

نەجمەدین غوڵامی:
**مارسیدسم لە کاک مەسعود وەرنەگرتووە**
8 ◀



هەڵکەوت زاهیر:
**سەد ساڵی دیکەش لەناو کورد دەشنێ درووست نابێتەوە**
12 ◀



**لەبەر ٥ ملیۆن کارزان دهۆکی بەجێهێشت**
11 ◀


# Rûdaw

Hejmar: 14
6 Cotmeh 2009
www.rudaw.net

ÇAPA EWRÛPA





Deutschland, Österreich, Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Denmark 15,00 DKK

Nr. 14 |6. Oktober 2009 | Dienstag




## DTP xwîna xwe taze kir

**Enqere (Rûdaw)**
Partiya Civaka Demokratîk (DTP) di 4'ê cotmehê de li Enqerê kongreyeke awarte lidar xist. Di kongrê de Ahmet Türk û Emine Ayna careke din wek hevserokên DTP'ê hatin hilbijartin.

Wek tê zanîn di demên dawîn de gelek kadir û rêvebirên DTP'ê ji alî dadgehên Tirk ve hatibûn girtin û di gelek şaxên partiyê de valahiyekî rûdabû. Tê ragehandin ku armanca kongrê dagirtina valahiyên rêvebiriyê û siyaseta berfirebûne bûye.

Ya balkêş ew bû ku gelek siyasetmeder û şexsiyetên naskirî tevlî kongra awerte bûn û hinek ji wan di rêvebiriya partiyê de cîh girtin. Ji vana kevnewezîr Adnan Ekmen, nivîskar Faik Bulut, kevneparlamenter Esat Canan bal kişandin.

Herwiha çend şexsiyetên naskirî yên Tirk, wek Prof. Dr. Buşra Ersanlı, Hunermend Yıldız Dormen, Rojnamevan Filiz Koçali jî di rêvebiriya nû ya DTP'ê de cîh girtin.

Di rêvebiriya nû ya partiyê de çend navên ku demeke dirêj e ji DTP'ê dûr ketibûn jî cîh girtin.

Serokê PKK'ê Abdullah Öcalan çend roj berê daxuyandibû ku divê DTP rola partiyeke banî bilîze û derdorên cuda tevlî partiyê bibin.

Di vê navberê de çend rêvebirên kevn yê DTP'ê, bersîva tevlîbûna kongrê nedan. Ji navboriyan Altan Tan û Ferîdûn Yazar gotin ji ber ku tevlîbûna kongrê bêfeyde ye, ew beşdaş nebûne. Ji serokê kevn yê HADEP'ê Murat Bozlak herçend tevlî kongrê bûbe jî tevlî hilbijartinan nebûye.

# Divê belgeya paqijiyê ya wezîrên nû hebe !

**Hewlêr (Rûdaw)** – Serokwezîrê Hikûmeta Herîma Kurdistanê Dr. Berhem Salih got "wek ku di hilbijartinan de soz daye, wê li Kurdistanê li dijî gendeliyê tevbigere." Salih di derbarê destnîşankirina wezîrên kabîneya xwe de jî got ku kesên ku heta niha navê wan ji bo wezîrtiyê hatiye rojêvê ne endamên serkirdayetiya PDK û YNK'ê ne.

Dr. Salih di derbarê kabîneya xwe de balê kişand ser ew kesên ku ji bo posta wezîrtiyê bên hilbijartin û wek şert got "divê ne kevne Baasî bin û di karûbarê wezareta xwe de pispor bin." Dr. Salih şertekî din yê wezîrtiyê jî diyar kir û got, "divê Desteya Çavdêriya Darayî ya Hewlêr û Bexdayê paqijbûna wan kesan erê bikin."

Salih di dîdara kanala Gelê Kurdistan de anî zaman ku ew



*Serokwezîrê Hikûmeta Herîma Kurdistanê Dr. Berhem Salih*

bi hemû fraksiyonên nav parlamenê re rûniştiye û wê hejmara wezîrên kabîneya nû ji 42 wezîran daxîne 19'an. Li gor Dr. Salih ew hejmar jî zêde ye.

Seroka Fraksyona Lîsta Kurdistanî Sozan Şehab jî li ser mijara desthilata serokwezîr got ku PDK û YNK destwerdana karûbarê Dr. Berhem Salih û destnîşankirina wezîran nakin. Şahab herwiha xwest ku wezîrên nû serwet û samana xwe eşkere bikin û ji bo şopandina karê hikûmetê desteyeke çavderiyê bê damezrandin.

Parlamenterê Lîsta Goran Ednan Osman jî daxuyaniyên Salih yê di derbarê şertê paqijiya wezîran û erêkirina Desteya Çavdêriya Darayî wek "şertekî vala" nirxand û got ku "kesen gendelkar jixwe tiştekî li ser navê xwe nakin."

Seroka Fraksyona Lîsta Goran Kwêstan Mihemed hefta borî gotibû ku desthilata Dr. Salih ya destnîşankirina wezîrên kabîneya nû tuneye û wezîr ji alîyê polîtburoyên PDK û YNK'ê ve tên destnîşankirin. Mihemed gotibû ku ewê di roja sondxwarina kabîneya nû de di derbarê Dr. Berhem Salih de dosyayekê belav bikin.

## "Nabe ku şîrketên biyanî sirên netewî zanibin"

**Ebdilla Nihêlî**
**Duhok (Rûdaw)** - Şêwirmendê Asayişa Aboriya Herema Kurdistanê Dr. Bêwar Xenisî di hevpeyvîneke taybet ji Rûdawê re behsa karûbarên neft û gaza li Herêma Kurdistanê kir. Dr. Bêwar Xenisî dibêje ku bêtirî 25 şirketên biyanî ji bo neft û gazê li Kurdistanê kardikin, lê çavdêrîkirina karên wan ne di asta pêwîst de ye. "Pêwîst e em saziyên neftê li Kurdistanê bêtir organîze bikin. Nabe ku şîrketên biyanî bi kêfa xwe li Kurdistanê kar bikin, sirên asayişa netewî zanibin. Hin tişt hene asayişa netewî ne, nabe ew şirket bizanin."

Dr. Bêwar Xenisî hebûna neft û gazê ji bo Herema Kurdistanê gelek girîng dibîne û vê mizgîniyê dide: "Civata Birêvebirina Neftê ku wê li Bexdayê bê damezrandin, wê nûnerên Kurdan jî tê de bin, Herwiha wê baweriyeke mezin ji şîrketên biyanî re jî dirust bibe û ewê bi rêjeyeke baştir bên Kurdistanê."

Dr. Bêwar Xenisî bibîrtîne ku niha şîrketên biyanî yên neftê dixwazin bên Kurdistanê, jiber ku rewşa Kurdistanê başe û yasayên wê jî hene. Xenisî cûr û pêkhateya nefta Kurdistanê ji ya Îraqê gelekî baştir dibîne û wiha didomîne: "Ji bo firotinê jî buhayê her bermîleke (varil) nefta Herema Kurdistanê ji 11-15 Dolaran ji nefta Îraqê bilindtir e. Lê Hikumeta Îraqê ji bo firotina neftê gelek pisrgirêkan ji Kurdistanê re derdixe. Pêwîstiya Îraqê bi şandina 250 hezar bermîlên zêde yên neftê heye. Kurdistan dikare 100 hezar bermîlan bişîne û beşeke wê pirsgirêkê çareserbike ku ji sedî 95 ji dahatiyê Îraqê li ser firotina neftê ye."

## Balyoza operaya Kurdî: Mizgîn Tahir



*Mizgîn Tahir di konsereki de arya distire*

**Şam (Rûdaw)** - Opera ku hunereke bi koka xwe Rojavayî ye û li Rojhilat bi giştî hunereke nû ye, di van salên dawî de di nav dengbêjiya Kurdî de jî cîh digire û çendîn dengbejên operayê yên kurdî jî derketine. Yek ji wan dengbêjên Kurd yê operayê ku di konserên xwe yên li bajarên wekî paytexta Sûriyeyê Şamê an jî Amedê ronakbîr û hunerdostan dikşîne guhdarkirina dengê xwe yê "tahir", Mizgîn Tahir e. Mizgîn Tahir keça dengbêjê Kurd Necîmê Omerî ye û xwendina xwe di amûjgeha mûzîkê ya bilind de, di sala 2004'an de li Şamê bi dawî kir. Mizgîn yekem konsera xwe bi alîkariya Navenda Çandî ya Fransî li Şamê li dar xist û ji hingî ve çendîn konsert pêşkeşî hezkiriyên operayê kirine. Mizgîn dibeje ku ew hewl dide ku opera û çanda Kurdî bi hev ve girê bide û ji ber wê jî wê Mozart, Verdi û Puccini bi helbestên Kurdî yên Cîgerxwîn û Ehmed Arif re straye. Mizgîn balê dikşîne ser çendin dengên kurdî yên resen û "girên dengbêjiya Kurdî", wek Şakiro, Seyd Elî Esker Kurdistanî, Meryem Xan û Hiseynkê Omerî û tînê ziman ku her yek ji wan dibistaneke hunerî ya serbixwe ye û Mizgîn ji bi şêweyê xwe hewl dide ku awazên nû li bejna helbestên kilasîk û nûjen ên Kurdî bike. Mizgîn Tahir bi Orkestra Silêmaniyê ya bi serokatiya Evdilla Cemal Sakirme re jî straye û wekî armanca xebatên xwe yê operayê, tevlîkirina muzîka Rojhilatî li gel orkestra Rojavayî destnîşan dike.



# Derya Kılıç: Ez bi serkeftinekî têr nabim û nabêjim bes e

**Mehmet Sebatlı**

**Köln (Rûdaw)** - Ev keça Kurd yek ji wan mînakên balkêş û serkeftî ye ku ji nava civaka Kurdên li Ewrûpayê dijîn, di salên dawin de derdikevin pêş. Navê wê Derya Kılıç e. Bi eslên xwe ji Midyadê ye, lê jiber ku bavê wê karmandê dewletê bû, ew li Batmanê mezin dibe. Beriya 13 salan wek mînakên bi dehhezaran, koçê Almanyayê dikin. Dê, bav, sê keç û kurek... Keça herî biçûk Derya ye. Derya xwendevan e, rojnamevan e, endamê partiyeke Alman e, bi spor û folklorê re mijûl e... Di encama axaftinê de derket holê ku Kılıç gelek karan bê stresê bi hev re dike û piştî ku di karekî de biserdikeve tu cara nabêje 'bes' e.

Ew bi xwe gelek bawer e; bi çavekî erênî li pêşeroja xwe mêze dike. Ji bo vê baweriyê û çavên erênî, gelek sedem jî hene. Derya yek ji wan kesên ku xwediye gelek kar in, lê kêm wext in, e. Ji ber vê yekê di çentê wê de du telefonên mobil û laptopeke ku her dem û li her derê pê dikare bikeve înternetê heye. Li nêzî Kölnê bajaroka Troisdorfê bi malbta xwe re dijî û li Kölnê jî diçe zanîngehê, diçe komeleyê, tevlî civînan dibe, di derbarê partiya xwe de agahî dide dezgehên ragihandina lokal û ji bilî van karan di derengiya şevê de jî ji rojnameyê re nûçe dinivisîne. Jiyana wê ya rojane ne tenê ev e: Her wiha mamostetiya folklorê dike... Deh sal berê jî li eyaleta Rheinland Pfalzê di pêşbirke judoyê de ez bûm yekem. Derya sedemê mijûlbûna xwe bi gelek karan bi hev re, wiha destnîşan dike. "Ez tu cara bi serkeftinekî têr nabim û nabêjim bes e. Hertim, piştî her karekî serkeftî, piştî xwendina her pirtûkekî dibînim ku ez gelek tiştan nizanim û hîn gelek tişt hene ez dixwazim bikim."

Em meraq dikin û pirsa vê yekê dikin: "Dixwazim gitarê bikim destê xwe!"

Cara yekem min navê wê piştî kongreya TÜDAY'ê (Komeleya Mafê Mirovan a Tirkiye û Almanyayê) bihîst. Agahî wiha bû: "Keçeke Kurd a ciwan bûye serokê TÜDAY'ê!" Ew bi temenê xwe yê 23 di vê kongrê de ne wek agahiyê bûbû serok, lê wek Hevseroka komeleyê hatibû hilbijartin. Lê piştî hevdîtin û axaftinê derkete holê ku ji bilî endamtiya TÜDAY'ê gelek tiştên balkêş di jiyana wê ya bist û sê salî de hene.

Li gor agahiyên ku Derya Kılıç di kokteyla Rûdawê de dide me, sedemê serkeftina wê dayika wê ye. "Diya min jineke gelek hişyar e, bi hêz e, çiqas dûr dibe bila bibe, ew dikare hertim xwe nêzikê me bike. Ez berhemê hewldanên wê me."

Gelo rolê bavê wê qet tuneye? Wek tê zanîn li Kurdistanê siyaset û ramanên nû hertim bi riya bavan dikeve nava malbatan. "Ez naxwazim bêjim ku bavê min pasîf e, lê ew kesekî zêde azadîxwaz e. Ew tu caran rê li pêşiya me negirtiye, astengî ji me re dernexistiye. Li gor min ev jî tarzekî birêvebirina malbatê ye." Dê gelek aktîf e û rê nîşan dide, destên wê direj in, hertim xwe digihîne zarokên xwe. Lê xwişk û birayên wê... "Xwişka min a mezin di birêvebirina saziya Utamarayê de cih digire. Xwişka min a navîn hunermend a Hîp-Hopa kurdî Dezz Deniz e..."

Em yek bi yek dipirsin, ew yek bi yek dibersivîne.

Dibistan?

"Li Zanîngeha Kölnê li beşa wirtschaftsrecht / hiqûqa aboriyê, xwendekara somestra 3'em e."

Cîgirtiya Serokê TÜDAY'ê?

"Salek beriya niha li ser înternetê min vê komelê nas kir û bi riya e-mailê ez bûm endam. Çend meh şûnda agahî dan min ku ji bo hevnasînê civînek heye. Ez çûm wê derê. Çend car wiha tevlî civînan bûm. Sê hefte berê ji bo rêvebiriya nû hilbijartin hat lidarxistin. Min xwe ji bo rêveberiya komeleyê pêşniyaz kir. Herkes pê dilxweş bû. Di vê hilbijartinê de ez wek cîgirê serok û herwiha berpirsiyara beşa jinan hatim hilbijartin."

Nûçegihanî?

"Ev nêzikî sê salan e ku ji rojnameya Özgür Politikayê re ji Kölnê û bajarên derdorê nûçeyan amade dikim. Ez vî karî hertim di derengiya şevê de dikim û gelek jê kêf distînim."

Mamostetiya govendê?

"Ez dikarim govenda 12 heremên Kurdistanê bilîzim. Herwiha çend awazên dansên Ewrûpî û Latînî jî dizanim."

DieLinke?

"Ez endam û berdevka DieLinkê ya Troisdorfê me."

Judo?

"Dema ku ez 13 salî bûm, li eyaleta Rheinland Pfalzê tevlî pêşbirkekî judoyê bûm û min sertîfika rêza herî baş wergirt. Niha jî dikarim lingên xwe ji bejna xwe bilindtir rabikim û xwe biparêzim."

Pirsa herî girîng ma dawiya axaftinê. Gelo van hemû karan çawa dikare bi hev re bike. Pê re qet stres çênabe? "Li dijî stresê di zanîngehê de min dersên taybet dîtiye. Derseki bi navê Zeit Menager heye. Mamosteyê me hertim digot ji bo ku hûn karibin bi plan kar bikin divê hertişt di pêşî da binivsînin. Dema ku hûn nenivsînin û di serê xwe de bihêlin dibe ku hûn jibîr bikin, jibîr nekin jî ew tişt di serê we de giranî çê dike, ev giranî dibe sedemê westandin û stresê. Ez pirtûk û rojnameyan di trênê de dixwînim; herwiha dîsa di trênê de çav li ajandeya xwe digerînim, karên ku bi telefonê bibin ez wan karan dikim."

Kesekî ewqas bi plan tevbigere nizane ka pêşeroja wê çawa ye, an bila çawa be? Bi destpêka bersiva xwe ew wek li benda vê pirsê bû, wiha got: Cihê ku ez niha lê me, 5 sal berê plan kiribû.

Lê 5 sal şûnda wê li ku be? "Ez naxwazim bi temamî parve bikim lê armanca min siyaset e..."



# Zebeşên Herranê pere nakin



Riha (Diha) - Zebeşên ku li Deşta Herranê hatîn çandin pere nakin. Cotkarên ji bo çavkaniya debara xwe li Deşta Herranê zebeş çandîn, ji ber bûhatiyê nayên firotin. Piraniya zebeşan li zeviyê man.

Bi GAP'ê re av çû Deşta Herranê û çotkaran dest bi çandiniya avî kir. Çotkarên ku heta niha bi genim, ceh, nîsk û çandiniyên bejayî debara xwe dikirin, piştî Projeya Başûrê Rojhilatê Anatoliyê (GAP) dest bi çandiniya avî kirin. Cotkaran, bi hatina avê re li Deşta Herranê dest bi çandiniya pembo, zebeş, garis û feqiyan kir. Cotkaran, ji ber ku pembo û garis zêde pere nekir heqê ked û lêçûna wan dernexist, dest avêtin çandiniya 'Zebeşên GAP'ê' kir. Lê ji ber ku piraniya cotkaran dest avêt çandiniya zebeşan, bihayê zebeşan erzan bû û bihayê zebeşan daket 5 qurişan. Cotkarên zebeşan, li hemberî bihayê zebeşan nerazîbûna xwe anîn ziman û diyar kirin ku ew bi kedek mezin zebeşan diçînin, lê bi 5 qurişan nayên firotin. Çotkanan, destnîşan kir ku ji ber kes zebeşan nakire hemû zebeşên wan di bîstan de dimêne û tev li nava bîstan xira dibe. Cotkarên zebeşan, dibêjin ku ji ber zebeş pereyan nakin karkerên di bostanên zebeşan de dixebitin jî mexdûr dibin. Cotkaran, nerazîbûnê xwe anîn ziman û xwestin rayedar çareseriyekê ji wan re bibînin.




Berfîneke Kurd û Almanan çêbû. Hevalê me Evdile Koçer bû xwedî keçeke û navê wê danî Berfîn. Dayika Berfînê, Anne Alman e. Em malbata Rûdaw, ji Berfînê re temeneke dirêj û tendurist dixwazin û Anne û Evdile Koçer pîroz dikin.

# Xatar pozê jinekî şikand!



**Rûdaw (Köln)** – Rapvanê Kurd yê navdar Xatar ji ber lêdana jinekê li Los Angelesê hat binçavkirin. Li gor agahiyên şîrketa 'Alles oder Nix Records' bûyer wiha qewimiye: 'Di şahiya Playboyê ya îna borî ku ji bo pîrozkirina vexwarinek nû hatibû lidarxistin, gelek kesên naskirî hatibûn vexwendin. Di nav wan de rapvanê Kurd Xatar û çendîn kêsên din yên naskiri ji Almanyayê jî hebûn. Hat gotin ku bêhemdê Xatar vexwarina wî rijiyaye ser kirasê jinekê. Herçiqas Xatar ji jinikê lêborîna xwe xwestiyê jî jinikê xwe aciz kiriye û gotinên nexweş ji Xatar re gotine. Tevlî van gotinên jinikê jî Xatar keniyaye. Lêbelê jinikê şeqamek li Xatar xistiye. Xatar jî ji vê yekê aciz bûye û wî jî şeqamek li jinikê xistiye û pozê jinikê şikestiye. Piştî vê bûyerê Xatar hat girtin û ew birin Girtîgeha Pacific County Jail li Los Angelesê. Xatar ji ber vê bûyerê dikare bi sê salan girtîgeh bê cezakirin.

Rûdaw

**Xwedî:** Rudaw Media GmbH · **Serokê Civata Birêvebir:** Nûredîn Weysî · nuradinwaisi@rudaw.net · **Sernûser:** Ako Mihemed · akopress74@yahoo.com · **Rêvebirê Beşa Kurmancî:** Faysal Dağlı · faysaldagli@rudaw.de
**Rêvebirê Beşa Soranî:** Hêmin Ebdulla · hemen@rudaw.nl · **Navnîşan:** Rudaw Media GmbH · Gutenbergstr. 63a · 50823Köln/ Almanya **Telefon:** +49 (0) 221.26 00 40 02 · **Telefax:** +49 (0) 221.26 00 49 81
**Web:** www.rudaw.net · **E-maîl:** info@rudaw.de (Beşa Kurmancî) · **E-maîl:** rudaw@rudaw.net (Beşa Soranî)

# Qaymeqamê Çemçemal ji kar hat avêtin


Qaymeqamê Çemçemalê Newzad Hemîd

**Silêmanî (Rûdaw)** – Parêzgeha Germiyanê, Qaymeqamê Çemçemalê Newzad Hemîd ji posta wî dûrxist û li îdareyê bajarê Kelarê wezîfedarkir. Li cîhê Hemîd Rêveberê Nahiya Qerehencîr Elî Reuf hat tayînkirin.

Hat ragehandin ku veguhastina Newzad Hemîd yek ji encamên biryara Polîtburo ya YNKê ye. YNK piştî hilbijartinan kampanya paksazî ya navxweyî dabû destpêkirin Li gor çavkaniyan wê di pêşerojê de li gor vê kampanyayê hijmarek qaymaqam û rêveberên nahiyeyên din jî ji postên xwe bên rakirin.

Qaymeqam jikaravêtî yê Çemçemal, Newzad Hemîd, di daxwiyaniyekê de bo Rûdawê ragihand ku ji kar avêtina wî ne qanûnî ye, lê ewê girêdayî wê biryarê be. Hemîd ku bi fermaneke telefonî ji kar hatiye dûrxistin dibêje, ''li hîç devereke cîhanê tiştekî wisa tune ku qaymeqamekî bi telefonê ji posta xwe hatibe dûrxistin.''

Li aliyê din çavkaniyekî ji Rûdawê re ragihand ku biryara veguhastin û ji kar avêtina Qaymeqamê Çemçemalê biryareke kevn yê YNKê yê: ''Newzad ji ber ku xizmê Kosret Resul e, nedikaribûn rasterast ew ji posta wî rakin. Demek berê Endamên Polîtburoya YNK'ê Emad Ehmed û Mehmûd Sengawî, daxwaz ji Newzad Hemîd kiribûn ku tevî malbata xwe bo bêhnvedanê sefera derveyî welêt bikin. Herwiha 150 hezar dolar jî wê bidin destê wî. Armanc ji wê dûrxistinê ji bo vê yekê bû. Lê Newzad wê pêşniyazê qebûl nakir.''

Newzad Hemîd ji Rûdawê re got rayedarekî leşkerî yê YNK'ê li ser rakirina wî gelek pêdagir bûye. Piştî hilbijartinên navxweyî yên YNK'ê di sala 2006'an ve ji bo li ser wî zextê bikin teqe li mala bavê wî jî kirine.

# Li Kurdistanê dema fêkiyên netewî !

**Necmedîn Nêrweyî**

**Zaxo (Rûdaw)** – Hişkesaliya par ku bandoreke neyînî li gelek welatan kir. Herêma Kurdistanê jî yek ji wan welatan bû ku nebarîna baranê bandorek zêde xirab lêkiribû ji ber hilbirandina çandiniyê û bi taybet ya fêkî, lê îsal li gor sala borî bi giştî pir başe.

Rêvebirê kiştukalê yê bajarê Zaxo got ku îsal rêjeya berhemên fêkî ji sedî 90 ji sala borî cuda ye û ger bi vî hawî di salên bêde berdewamke, heta emê berhemê fêkiyê cotkaran bişînin derveyî welat jî, herwiha ev beşa aborî ya Kurdistanê jî wê xurt be. Endazyarê çandiniyê Seîd Selman di vê derbarê de wiha got: "Ji ber ku îsal baran baş barîbû, ger berhema fêkiya îsal ber bi başiyê biçe, wê cûrên wan jî baştir be." Seîd wiha axaftina xwe domand: ''Sala borî ji ber ku berhem ne başbûn me statîstîka mehane an salane jî çênêkir, lê îsal emê mehane jimêriyekê bo berhemên fêkî çêbikin. Bo nimûne çend cûrên fêkiyan ku heta niha hatine çinîn û daketine bazara Zaxoyê ev in: Xox 1 hezar û 581 ton, bacan 513 hezar ton, tirî 678 hezar ton, heta niha ku hê sêv bi temamî nehatine çinîn jî, lê rêjêya wan gihaye 195 hezar ton û hê berdewam e."


Fêkîvanên Kurdistanê rûgeş in

Her wiha Seîd daxuyand ku fêkiyê Zaxo bo hemû Herêma Kurdistanê tê rêkirin heta ji bo hinek deverên Îraqê jî: ''Ger berhemê fêkî wiha baş be, di salên pêş de emê fêkî rêkin dervahî welat jî û ev jî wê bibe beşeke xort ji bo aborî ya Kurdistanê.''

Piştî ku Hikûmetê Herêmê biryar da, ji meha 6'ê û pê de, fêkiyê biyanîyan derbasî nav xaka Herêma Kurdistanê nebe. Berhema cotkaran bi başî hat firotin gel jî razî ye û eger hikûmet bi vî awayî ji cotkaran xwedî derkeve wê xelk zêdetir bi karê çandiniyê ve mijul bibin

Cotkarê bi navê Cume Reşîd jî wiha dibêje: "Me baxekî sêvan hebû û sêvên me zêvê xwe jê nedikirin û dirizîn, ji ber ku sêvên me nedihatin firotin, me biriba bazarê, heqê kirêya otombîlê nedidêrêxist, lê îsal piştî ku hikûmetê biryar stend tenê giringî bi fêkiyên xwemalî werê dayîn û rê neda biyanî li derve bên û hevkarî ya cotkaran kir, heta radeyekî pir baş me sûd ji fêkiyê xwe wergirt û bila her wisa berdewambe."

Salih Kerem fêkî firoşekî li bazara Zaxo ye. Li gor wî fêkiyên Kurdistanê gelek erzan e: "Xelk zêdetirtir fêkiyên Kurdistanê dikirin. Ji ber ku bitam û erzan e." Di dema me bi Salih re hevpeyvîn çedikir, jinek bi navê Hedar ku dixwest sêvan ji Salih bikire, wiha got: "Heme çilobe, mirov dizane, ev sêvên îsal in û xwemalî ne tama wan jî zêde xweş e, lê ev sêvên Sûrî û Îranî kes nizane çiqas di kargehan de mane û çawa gihîştine."

# Goran dosyayeke Dr. Berhem eşkere dike!

**Firyad Mihemed**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Seroka Fraksiyona Goran li Parlamenê Kurdistan Kwêstan Mihemed dibêje hinek tiştên taybet li ser Serokwezîrê Kurdistanê Dr. Berhem Salih di destê wan de hene û di roja bawerîpêdanê de eşkere dikin.



Parlamenê Kurdistan di rûniştina xwe ya çarem a roja 16.09.2009'an de ji 101 parlamenterên amade bi dengê 73 parlamenteran Dr. Berhem Ehmed Salih bo postê serokwezîr û Azad Berwarî wek cîgirê serokwezîr destnîşan kir. Fraksyona Goran û hinekan ji endamên Lîsta Xizmetguzarî û Çaksazî deng nedanê. Di derbarê dengnedana Berhem Salih de, Seroka Fraksyona Goran Kwêstan Mihemed wiha got: ''Ji ber sê sedeman me deng nedayê; Yekem em opozîsyon in û tevî hikûmetê nabin, helwêstê opozîsyonê jî wiha ye deng nede hikûmetê, dûyem têbîniyên me li ser şêwazê danîna serokwezîr û cîgirê wî hene. Hinek tiştên şexsî yên Dr. Berhem Salih di destên me de hene û di roja bawerîpêdanê de emê ew tişt eşkere bikin û bînin rojevê.''

Kwêstan Mihemed di daxwuyaniya xwe de rexne li awayê damezirandina hikûmetê jî anî û wiha got: Hêvîdar im ji rêvebirina 18 salan a ku şikest aniye dersê werbigrin ku ne serkeftî bû, kesên hêja deynin. Sîstema rêvebirina me ev e ku li cîhanê tenê parlamen serokê hikûmetê destnîşan dike, lê li ba me herdû bi hev re tên destnîşan kirin. Li cîhanê serokê hikûmetê bi xwe diçe kesên teknokrat û lêhatî dibîne û dixe ber parlamenê heta deng bidiyê. Lê ew herdû rêzdar dema diçin, polîtburoyên YNK û PDK'ê kesan destnîşan dikin. Dr. Berhem di danîna wezîrên YNK'ê de dive xwedî nerînên be û wan werbigre, lê di danîna wezîrên PDK'ê de hîç desthilateke wî tune û her pirs û raya wê jî nayê wergirtin. Wate xirabiya vê sîstemê ew e ku ew herdû kes bi hev re tên destnîşankirin bo serok û cîgirêyê. Ew ji danîna kesan bê agah in, lewma polîtburoyên herdû hizban wan dideyne û ji ber vê yekê herdû rêzdar di karên xwe de serkeftî nabin.''

## Tirkiye mehkûmê şaşiyên xwe ye!


Mustafa Şefîq Edilbî

Di nav welatên Îslamî de welatê ku herî zêde îdiaya pêşveçûnê dike Tirkiye ye. Nexasim di warê avakirina demokrasiyê de Tirkiya xwe weke pêşengê cîhana Îslamî dibîne. Lê îdiakirin û rastiyên jîyana sîyasî û civakî ya Tirkiyeyê li hev nayên. Ev demek dirêje ku Tirkiye di navbera kevneparêzî û hemdemîbûnê de tê û diçe. Dema desthilatdarên vî welatî li rewşa cîhanê dinêrin, xwe neçar dibînin ku ji qalibên heyî derkevin, lewma hertim di kom û komikên navnetewî de rayedarên vî welatî daxuyaniyên germ didin. Lê dema dizîvirin nava Tirkiyeyê tevayî ev gotinên xwe ji bîr dikin û vê carê dixwazin li gora hestên şoven û neteweperestên Tirk tevbigerin. Ev rastiya hanê weke durûtiyek eşkere di tevayî helwêst û danûstandinên rayedarên vî welatî bi rengekî eşkere derdikeve holê. Pir eşkere mirov dikare bêje ku durûtî bûye rengekî berçav di sîyaseta vî welatî de. Tirkiye weke welatekî sekûler tê naskirin lê kevneperestiyek gelek xurt hem di warê civakî û kultûrî de hem jî di warê siyasî de li ser gelê vî welatî hatiye sepandin. Sexmeratî têkoşînek zêde ji aliyê hêzên demokrat û pêşveroyên vî welatî heta îro ev rastiye nehatiye guhertin. Astenga herî mezin ku di hemû waran de dibe kelem li pêş pêşveçûna vî welatî hakimbûna netewperestiya Tirkiye li ser sîyasetê.

Hizra Netewperestî li Tirkiyê ne di çend salên dawî de çêbûye ne jî tenê bi çîneke biçûk ve sînûrdar e. Ev e encama siyaseteke berdewama desthilatdarên vî welatiye û netewperistiyê.Ji demek dirêj û virve desthilatdarên Tirk hertim xelkê xwe bi hestên netewperistî perwerde dikin. Li hember tevayî netewên cîranên Tirkiyê û netewên xayre Tirk yên li vî welatî dijîn dijatiyek mezin hatiye çêkirin. Li dijî Yûnan, Ermenî, Bulgar û Ereban hertim di nava civaka Tirkiyê de hevokên biçûk kirinê û bi kêm zanîna netewan tên bikranîn. Elbet ji bo Netewên wek Kurd, Ermenî, Rom, Çerkez û Asûrî_Sûriyanî yên li Tirkiyê dijîn înkara netewî bi rengek pir kûr di nava civakê de cih girtiye. Ji bon parastina netewa Tirk ev hemû rengên înkar û biçûkkirina netewên akû berdewam di dîrokê de hat meşandin wek astengek herî mezin li pêş tevayî projên pêşveroyên di vî welatîde dibin berbest. Desthilatdarên Tirk her gavekî ber bi pêşve bavêjin ev pirsgirêk wek asteng xwe dide pêş. Ev şovenîzma ku roj bi roj hatî pêşxistin û heta îro bi rengekî pir xurt hakimî civak û desthilata Tirkiyêye wisa xûyaye bi asanî nahê raki û desthilata Tirkiye heta xwe ji vê pirsgirêkê rizgar neke nikare di warê demokratîkbûnê de tu gavên ciddî bavêje, jiber ku Tirkiye bi rengê herî xerab bûye mehkûmê netewperestiyê.

# Li Hewlêrê rojên çanda Almanî-Kurdî



**Hewlêr (Rûdaw)** – Piştî vebûna konsolxaneya Almanyayê li Başûrê Kurdistanê û pêşketinên siyasî û aborî de, niha di warê çand û hunerî de jî Kurd û Alman nêzîkî hev dibin. Enstîtuya Almanî ya Goethe li Hewlêrê Rojên Çanda Almanî-Kurdî "Deutsch-kurdische Kulturtage" li dar xist.

Rojên Çandê ku bi hevkariya şaxê Hewlêrê yê Navenda Hunerên Ciwan "Kurdish Fine Arts Association" hate amadekirin, di navbera 4 û 6'ê cotmehê li Hewlêrê, li navenda Media Hall, birêve çûn û li gel şano û pêşangeh, fîlm û mûzîka almanî û kurdî hatin pêşkeşkirin. Di pêşangêha wêneyan de wênekêşê Alman Stefan Koppelkamm fotografên xwê yên di derbarê guherînên ku li Almanyaya beriya yekbûna herdû dewletên Alman û piştî yekbûna wan kişandibûn, pêşkeş kirin.

Di heman pêşangêha ku wê heta 9'ê cotmehê bidomê, wênekêşên Kurd Şezad Hiranî, Cîhangir Gerdy, Bekir Nebî û Şerwan Mohsîn jî bi wêneyên xwe yên li ser babetên gelerî, beşdar bûn. Ji bilî mûzîkvanên Alman û Tirk Rolf Zielke û Mustafa Boztüy, stranbêjên Kurd Şîrwan Şeyda, Xwoşewî Azîz û Çinar Kerkûkî jî beşdar çalakiya çandî bûn.



Komeke mûzîkê ya NÇDF'ê




## Navenda Çanda Dîcle û Firat:

# Kurd xwe asîmîle dikin

**Amed (Rûdaw)** - Li Amedê Navenda Çanda Dîcle û Firat (NÇDF) li cihekî dîrokî di sala 2003'an de avabûye. Bi kar û barê xwe yên li ser wêne, sînema, govend, mûzîk, şano û hunerên plastîk ve jiyana Amediyan rengîntir dike, bi komên xwe yên mûzîkê ve li seranserî Bakur konseran pêşkêş dike. Bi peykertiraşiyê ve li gelek cih û parkan nobedariya hunerê dike. Bi komên xwe yên zarokan ve hunermendên mezin digihîne. Di gelek mîhrîcanên çand û hunerî de reng û dengê wan heye. Bi kurtasî NÇDF li Amedê wek hêlîna çand û hunerê tê nasîn.

Rêvebirê Navenda Çanda Dîcle û Firatê Welat Esin ji Rûdawê re axivî û agahiyên taybet dan me. Welat Esin diyar kir ku kar û barê NÇDF piranî li ser çand û hunera Kurdan e, "Li ser hunera gelên ku li rojhilata navîn lê dijîn jî xebatên me hene. Li ser çand û stranên wan em disekinin...."



Welat Esin

Li ser astegiyan Esin dide zanîn ku pirsgirêka herî mezin sedemên madî ne û neorganîzekirina hunera kurdî ye li Bakur, "Lê ji astengiyan zêdetir, ji xebatên çand û hunerê re ked û sebir lazim e, di du rojan de tu tişt ava nabe. Gelek kes bêsebr in. Li bendê ne ku du sê salan de em hunermendên mezin bigihînin. Huner ne wek siyasetê ye..."

Li ser armanca NÇDF jî wisa got, "Armanca herî bingehîn xwedîlêderketina çanda kurdî ye û zargotina we ye û zimanê we ye. Û bi salane çanda wê jiyana wê asimîle bûye. Em dixwazin ku pêşî li vê asîmilasyonê bigrin û lê xwedî derkevin. Yek ji armancê me jî ew e ku em li paytexta dila Amedê mohra xwe li çand û hunera her sê parçeyên din bidin..."

Dû re em jê wiha dipirsin, "Rexneya herî mezin ew e ku Navendên Çandî ên Kurdan dersên xwe bi tirkî didin. Fikra we li ser vê çi ye?" Esin wiha berdewam dike, "Heya ku jiyana kurdan bi hestên kurdî em nejîn, ders wê bi tirkî bê dayîn. Lê belê em a niha mufredatên li ser hunera kurdî amade dikin. Bi fikirin jiyana tirki, afirandinên tirkî û evînên tirkî û çanda kurdî hûn perwerdehî didin..."

Em jê dipirsin ka ew li ser rexneyên ku çand û zimanê tirkî li Amedê serdest e çi difikire, ew jî ji vê yekê gazincan dike: "Belê rast e em dikarin bêjin bi salan e ziman û çand li Bakur hatiye qedexekirin, lê van salên dawî zêde bandor li ser tune be jî, mixabin yên me xwe bi xwe asîmîle dikin. Zimanê tirkî ji wan re hêsan tê mixabin..."

Li ser pirsa me ya "Ji bo ku ziman û çanda kurdî li Amedê deng bide û popûler bibe, gelo jê re çi lazim e?" Esin ji Rûdawê re wisa dibêje: "Jê re gelek tişt divê. Berî her tiştî divê hunermendên Kurd zimanê zikmakî yanî kurdî baş bi kar bînin, divê zimanê kurdî bixine nava jiyana xwe, divê pê bijî. Divê wekî gel bijîn. Jixwe hingê wê ziman û çanda kurdî jî popûler bibe..."

Em dixwazin jê fêr bibin ka di hêla çand û hunerî de gilî û gazincên wî ji siyasetmedarên Kurd çi ye û ji wan çi hêvî dike, Esin ji me re dibeje ku divê berî her tiştî di programa partiyê de ji bo çand û hunerê zêdetir li ser bisekinin: "Divê çand û hunera kurdî bînin merhaleyeke zagonî û divê çand û hunerê wek baxçê dawî nebînin. Mixabin gelek siyasetmedar wekî pêlîstokê li çand û hunera Kurd mêze dikin. Ew nizanin ku bêyî çandê siyaset jî hişk e..."

Li ser têkiliyên wan bi belediyên Amedê re Welat Esin destnîşan dike ku têkiliyên wan bi hev re baş in: "Piştî ku Şaredarên Partîya Civaka Gel hatin hilbijartin li ser çand û hunera kurdî disekinin, kar û xebatên baş dikin. Em bi hev re li ser çand û hunera Kurd proje amade dikin û pêk tînin. Helbet her tişt ne li gorî dilê me ye, lê ez hêvî dikim hin kêmasî wê bi nifşên nû re çareser bibe. Ji ber ku hin şaredar ji meseleyên çandî qet fêm nakin..."

Li ser TRT6'ê jî Welat Esin dide diyar dike ku TRT6 gelek caran li deriyê wan xistiye, lê wan ji ber gelek sedeman qebûl nekirine, "TRT6 xwest bernameyekê çêkin lê me qebûl nekir, ji ber çi me qebûl nekir, bifikirin bername û rêzefilmên TRT6'ê dûrî jiyan û çanda kurda ye. Me samîmî nedît. Loma me qebûl nekir..."

Dû re em jê dipirsin ka ew hin gavavêtinên hikumeta AKP ya li ser çand û hunera Kurd çawa dinirxîne, Esin dibêje ku ev gavên AKP bê samîmî ne. Lê zede dike ku ji bo hilbijartinê AKP hinek vebûye, lê dibêje ku gavên bêsamîmî ew qebûl nakin û napejirînin. Di dawiyê de bang li nivîskar û hunermendên Bakur dike ku bila xwedî li çand û hunera kurdî derbikevin û bila nebin pêlîstokên dagirkeran.

**"Ciwanên Amedê ji rêzefîlman hezdikin"**

Esin gazincan ji ciwanên Amedê jî dike ku ciwan ji rastiya nav civakê pir cuda ne: "Wek hunera postmodern û oryantalîst li çand û hunera kurdî dinêrin ciwan. Gelekî di bin tesîra medya Tirk de ne, di bin tesîra rêzefîlman de ne. Lê Navenda Çanda Dîcle û Firatê zêdetir li ser zargotinên bingeha kurdî disekine, pisporên vî karî perwerde didin ciwanan..."



## Rapora Konseya Ewrûpa li ser Tirkiyê:

# Divê cerdewanî ji holê rabe

**Bruksel (Rûdaw)** – Konseya Ewrûpa rapora xwe ya di derbarê Tirkiyeyê de belavkir. Di raporê de daxwaz tê kirin ku sîstema cerdewaniyê bê rakirin û bi kêmnetewan re diyalog bê destpêkirin. Berpirsê Komîsyona Mafê Mirovan yê Konseya Ewrûpayê Thomas Hammarberg roja 1'e cotmehê de rapora li ser mijara mafê kêmnetewên li Tirkiyê daxuyand raya giştî.

Hammarberg berî demekî li çend bajarên Tirkiyeyê li ser pirsa mafê mirovan lêkolînan kiribû.



*Berpirsê Komîsyona Mafê Mirovan yê Konseya Ewrûpayê Thomas Hammarberg*

Hammarberg li ser helwestên Tirkiyeyê yên di derbarê mafê kêmnetewên li welat anî zimên û got çima Tirkiye tenê Ermenî, Yûnan û Cihûyan wek kêmnetew nas dike. Berdevkê komîsyonê daxwaz kir ku Tirkiye bi hemû kêmnetewan re diyalogeke baş deyne.

Piştî serdana Hammarberg, rejîma Tirkiyeyê ji bo pêşxistina diyalogê bi rêvebirên Kurdan, kêmnetew û baweriyên din re dest bi danûstandinê kir. Gava Tirkiye ji aliyê komîsyonê ve bi awayeke erênî hat dîtin û pêşwazîkirin.

Hammarberg xemgîniya xwe li ser kêmkirin û sînorkirina mafê baweriyên cewaz li Tirkiyeyê anî zimên. Wî daxwaz ji rêvebirê dewletê kir ku, pirçandîbûn dewlemdî ye û piralî fêda xwe heye, divê ev rastî di nava xelkê de bê belavkirin. Hammarberg bala rêvebiran kişand ser pirsa parastina mafê mal û milkên kêmnetewên nemihemedî û xwest ku, yasayên Tirkiyê li gorî yên Yekîtiya Ewrûpayê bêne serastkirin.

Rapor balê dikişîne ser Kurdên koçber û daxwaz ji Tirkiyeyê kir ku bi zutirîn wext birînên wan derman bike, ji bo vegerê bibe alîkar, mafê wan biparêze anjî li cihê lê ne, bibe alîkar.

Endamê komîsyonê Hammarberg xwest ku, sîstema cerdewaniyê ji holê bê rakirin û di şûna wê de gavên erênî bê avêtin.

Di dawiya raporê de pêşniyarên Hammarberg hene ku bi giştî ji bo parastin, pêkanîn û çavdêriya mafê mirovan li Tirkiyeyê yasa bêne guhertin û gavên pêwîst bêne avêtin.

# "Kalê min nedît, min nedît, lê zarokên min wê bibînin"



*Jiyana A.Melik Firat wek dîroka Kurdên li Tirkiyê bû: Sirgûn, girtin û qedexeyên siyasî*

**Köln (Rûdaw)** - Koçkirina A. Melik Fırat (1934-2009) li welat û li derveyî welat nas, dost û xizmên wî anîn cem hev. Piştî ku li gundê malbata Şêx Seîd ji bo taziyeya Abdülmelik Fırat kon hat vekirin, di 4'ê cotmehê de jî li Almanyayê bajarê Bottropê ji aliyê Komela Piştgiriya HAK-PAR'ê di avahiyekî de civîna bîraninê hat lidarxistin. Lawê wî Abdülkadir Fırat ji mêvanên ku hatin taziyê re behsa rojên dawîn ên bavê xwe kir. Fırat birbîranî ku bavê wî gotiye min ji bo aştiye hertim destê xwe dirêj kir, lê kesê bi destê min negirt: "Di gelek mijaran de cavên wî vekirî cûn. Baweriya wî her hebû ku pirsgirêka Kurd çareser bibe, lê digot kal û bavên min nedîtin, ezê jî nubînim, lê zarokên min wê bibînin."

Abdülmelik Fırat dema ku serokatiya HAK-PAR'ê dikir ji ber pirsgirêkên tendurustî nekarî karê xwe berdewam bike û dev jî siyasetê berda. Li mala xwe ya gundê Kolhisara Xinûsê dima; piştî ku nexwaşiya wî giran dibe kurê wî Abdülkadir Fırat wî radike nexweşxaneyekî li Enqerê. Roja 29'ê îlonê Fırat li Enqerê bi temenê xwe yî 79 çû ser dilovaniya xwe. Cenazeyê Firat roja 30'yê îlonê ji Enqerê birêket û roja 1'ê cotmehê li gundê Kolhisara Xinûsê di goristana malbatê de hat veşartin. Di merasîma definkirinê de serokê HAK-PAR'ê Bayram Bozyel, nûnerê PDK-Bakur Omer Mîranî, serokê berê yê HADEP'ê Murat Bozlak, parlamenterê Erzeromê yê AKP'ê Saadettin Aydın, şaredarê Erzeromê Ahmet Küçükler û gelek kesên din cih girtin.

Abdülmelik Fırat di sala 1934'an de Erzeromê hat dinyayê. Kurê Şêx Şahabettin e; ew jî xwarzê Şêx Seid e. Li Amedê Dibistana Bilind a Zanyarên Sosyal qedand. Ji bilî kurdî û tirkî erebî, farisî, îngilizî û frensî dizanibû.

Piştî sala 1925'an ku serhildana Şêx Seîd têkçû, malbata wî hemû koç kirin. Fırat di pirtûka ku Ferzende Kaya hîn nû amade kiriye (Sirgûnê Mezopotamyayê/Serpêhatiyên Abdülmelik Fırat) de, di derbarê zarokatiya xwe de wiha dibêje: Di sala 1935'an de malbata me cara duwem hat sirgûnkirin. Dayik û bavê min hertim ji min re qal dikirin. Ew roja ku me sirgûnkirin wêneyê malbata me hatiye kişandin; ez du salî me, paçekî li min e û lingên min pêxas in. Di vê perîşaniyê de, birçî û tazî em koç dikin. Ji Erzeromê me koçê Trakyayê dikir. Me pêşî şandin gundên Sergen û Midye ku bi navçeya Edirneyê Vize ve girêdayî ne. Apên min gotiye, 'Em hemû xizmê hev in, pismam in, xal û xarz in, me ji hev belav nekin.' Rayedarên dewletê qebûl nekirine û me ji hev qetandine. Piştî gelek salan em dîsa li Sergen gihan hev.

Piştî salên 1948'an pêşketinên siyasê pêkhatin. Ji bilî CHP'ê di hêla siyasetê de partiyên din jî derketin. Di vê navberê de malbata Fırat vegeriyan gundê xwe yê Kolhisara li Xinûsê. Di sala 1957'an de 7 sal temenê wî mezin kirin û ew tevlî hilbijartina bû û di lîsteya DP'ê de kete parlamentoyê.

Firat di heman pirtûkê de di derbarê zarokatiya xwe de wiha dibêje: Armanca Menderes ew bû ku ji malbata me kesekî bikeve parlamentoyê û bi riya vê yekê di nav Kurd û Tirkan de têkiliyan xurt bike. Menderes di sala 1954'an de xwest ku apê min bikeve parlamentoyê. Lê Celal Bayar dijbertiya vê biryarê dike û dibêje ku tiştekî gelek şaş e ku em kurê Şêx Seîd tevlî parlamentoya Atatürk bikin. Paşê Menderes banê apê min kir û pê re axifî. Heta ew roj tu xwesteke min tunebû ez têkevim nava siyasetê. Lê Menderes ji min re digot, 'Ez di kesayetiya te de dibînim ku tu dikarî bibî parlamenekî xurt. Li Erzeromê ez ketim hilbijartinan û di rêza 13.de biserketim çûm parlamentoyê.

Paşê di derbeya cuntayê de (27'ê Gulanê) ew jî di nava 500 kesî girtî de bû. Nêzikî salû nîv li girava Yassıadayê di girtîgehê de ma. Cezayê dardekirinê danê, paşê sivik kirin û ew sal û nîv li girtîgeha Kayseriyê raket.

Piştî cuntaya 12'ê îlonê ew dîsa tê girtin... Ji girtîgehê derdikeve lê nikare karê siyasî bike. Gelek sal navber dide karên siyasî. Di sala 1991'an de ji Erzeromê di lîsteya DYP'ê de careke din kete parlamentoyê. Demekî şûnda jiber ku DYP li dijî gelê Kurd siyaseta dijberî meşand Fırat ji vê partiyê istifa kir. Demekî kurt bi parlamenê Rizeyê Hasan Mezarcıyê ku ji RP'ya Necmettin Erbakan istifa kiribû, xebitî lê tu encam negirt. Di 12'ê Çileya 1996'an li ser ifadeyên îtirafkarekî tê girtin dîsa. Demekî bi DEHAP'ê re meşiya. Di dawiyê de di sala 2002'an de HAK-PAR'ê avakir.

# Îran rê li ber xwendekarên Kurd digre

**Sabîr Qadirî**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Zara Fereci keçe Kurdeke bajarê Bokan yê Rojhilatê Kurdistanê ye, piştî hewl û cehdeke zêde, navê wê di beşa coxrafî a zanîngeha Tewrzê de derket, lê bi hêceta wê yekê ku birayekî Zara endamê yek ji partiyên Kurdî ên neyarê Îranê ye, rê jê re nehat dan, li zanîngehê bixwîne.

Bêparkirina xwendekaran ji xwendinê û di bin navê 'xwendekarên estêrdar,' li serdem Mihemed Xatemî hat rojevê, ew yek bû sedema çêbûna nerazîbûnên berfireh ên zanîngehên Îranê, her xwendekarekê hikûmet rexne bikira, ji xwendin dihat bêparkirin.

Zara nimûneya berçav a wê haletê ye ku xwendekarên Kurd pêre rûbirû ne û her ew jî xwendekarên Kurd ên Rojhilatê Kurdistanê neçar dike rû li Başûrê Kurdistanê bikin û li zanîngehên vir bixwînin.

Arif Nadirî ku xelkê bajar Qurwe yê Rojhilatê Kurdistanê ye û di zanîngeha Esedabad a Hemedanê xwendekar bûye û piştî derbaskirina qonaxa yekem a zanîngehê, bi tawana wê yekê ku çalakî ya siyasî dike, ji aliyê parastina zanîngehê ve hat neçarkirin ku zanîngehê bicih bihêle. Arif ew helwêsta Komara Îslamî wek helwêsteke siyasî dizane û bawer e ew helwêsta karbidestên Komara Îslamî tişteki ne nû ye.

Arif wiha axifî: "Bêparkirina xwendekarên Kurd ji xwendinê berê jî hebûye, lê ji ber ku ragihandineke çalak nebûye ku wê binpêkirinê eşkere bike, dengvedan nebûye." Arif Nadirî wiha dirêjî da axaftina xwe: "Niha li Îranê pêleke nû li bizava xwendekarî pêk hatiye û ev pêvajoya nû, xwendekarên Kurd jî li xwe girtiye û Komara Îslamî jî ji rêya bêparkirina wan ji xwendinê, wan serkut dike."

Mafnas û parêzerê Kurd yê niştecihê Tehranê, Salih Nîkbext, ew helwêsta berpirsên zanîngehê wek helwêsteke siyasî dizane ku digel bingehên destûra Îranê, şerîet û mafê mirovan netebayî heye û hevdem ew halet jî bi haleteke tevalî nazane: "Piştî serdana Ehmedînejad bo hinek ji zanîngehên Tehranê, wek nerazîbûna berfireh a xwendekaran derbarê siyasetên Ehmedînejad, siyaseta bêparkirina xwendekarên nerazî, di çarçoveya berfirehtir rêve çû."



*Li zanîngeha Tehranê xwendekar ji bo mafên xwe çalakiyê li dar dixin*

Li gor destûra Îranê, hîç berpirsek nikare tu ksî li çi yek ji qonaxên xwendinê bêpar bike. Di madeya sêyem a Qanûna Bingehîn a Îranê de hatiye: "Xwendin ji qonaxa destpêk heta qonaxên herî bilind ên xwendinê, bi belaş mafê her Îraniyekê ye." Nîkbesxt di vê derbarê de nerînên xwe wiha rave dike: "Bi berçavgirtina wê madeya destûrî, em dikarin bêjin mafê wan kesan hatiye binpêkirin ku ber li xwendina wan tê girtin."

Nîkbesxt wiha dirêjî da axaftina xwe: "Heta her kesek yan her tawanbarek divê li gor yasayê riftar digel were kirin û Qanûna Bingehîn a Îranê rê li tu kes an tawanbarekê negirtî ye xwendinê bidomîne."

Danezana Gerdûnî a Mafê Mirovan jî giringî bi xwendina hemû takekê daye û di benda 1 a madeya 24 a wê danezanê de hatiye: "Her kes dikare ji mafê xwendinê behremend be, hemû kesek dibe, xwendina destpêkî derbaz bike û herwiha derfeta wek hev bo hemû takekê hebe heta li gor tawankariyên wî/ê, pileyên bilind ên xwendinê biqedîne."

Partiyên Rojhilatê Kurdistanê, bêparkirina xwendekarên Îranî bi giştî û xwendekarên Kurd bi taybetî di sîstema Komara îslamî de wek diyardeyek normal dizanin û bawer in, dîroka desthilatdarî ya Komara îslamî pêkhatî ye ji dijberîkirin û ji holêrakirina neyarên xwe.

Endama Komîteya Navendî a PDKÎ, Nahîd Husênî, di vê derbarê de wiha axifî: "Zara Fereci ne yekemîn û ne Kurda/ê dawî jî dibe ku di Îranê de ji mafê xwendinê tê bêparkirin." Nahîd Husênî ew kiryara Komara Îslamî wek helwêstek zanî ku bi ser zanîngeh û karbidestên zanîngehan hatiye sepandin: "Komara Îslamî bo valakirina navendên berhemanîna zanist û merîfeyê ji neyar û cudabîran û bi awayekî rûyekî bo mana xwe, ji hemû alaveke ne qanûnî mifahê distîne û heta wan yasayên ku bixwe pejirandiye, binpê dike."0

# Kurdên Rojava xwe dikujin!

**Besam Mistefa**

**Heseke (Rûdaw)** – Di demên dawîn de di civaka Kurd a li Rojavayê Kurdistanê de bûyerên xwekuştinê zêde bûne û hemû temen, regez û çînên civakê li xwe digre. Lê di piraniya bûyerên întîxarê de rêjeya jinan zêdetir e. Li gor daxwiyaniyên rêxistinên mafên mirovan sedemê van bûyeran bêkarî, rewşên dijwar ên malbatî, siyasî û civakî ne.

Li gor daxwiyaniyeke Rêxistina Mafên Mirovan li Sûriyê xortekî bi navê Azad Mihemed Emîn bi sedemê xirabiya rewşa jiyana wî bi tifingeke nêçîrvaniyê jiyana xwe bidawî anî. Azad li gundê Girhok jidayik bûye û yek ji Kurdên bênasname yên Hesekê ye û heft birayên wî jî hene. Jiber li Navçeya Cizîrê li jêr siya salên hişk ku Sûriyê û navçe daye ber xwe, xelk neçar dibin ber bi metropolên Sûriyê ve koç bikin. Azad jî ji bo alîkariya merivên xwe bike û debara jiyana wan peyde bike li Şamê kar dikir. Roja 14'ê îlonê dema Azad li ba yek ji xwediyên bexçeyan de kar dikir, întîxar kir.

Daxwiyaniya MAF'ê (Mafên Mirovan li Sûriyê) behsa meseleya xwekuştina Azad û xortan dike û wiha dibêje: "Belavbûna diyardeya xwekuştinê di vê dema dawî de di nav ciwanên Kurd de, herwiha rewşên bêhêvîtî, xemgînî û têkçûna derûnî cihê dilgiraniyê ne. Ev rewşên navborî bi piranî di nav Kurdên navçeya Cizîrê rû didin. Sedemên herî girîng jî pirsgirêkên aborî, civakî û koçkirina bi neçarî ye."

Derbarê zêdebûna rewşên întîxarê de çalakvan mafên mirovan û endamê damezrênerê MAF'ê Brahîm Yûsiv ji Rûdawê re wiha ragihand: "Rewşa aborî ya xirab li Cizîrê di nav ciwnan de bûye sedemê bilindbûna bûyerên bêhêvîtî, têkçûn û belavbûna diyardeya xwekuştinê. Azad Mirad jî yek ji wan xortan bû ku wek gelek kesên din ji Navçeya Cizîrê ber bi Şama peytexta Sûriyê koç kir da debara jiyana malbata xwe peyde bike, lê nikarîbû êdî zehmetiyan tehemul bike û xwe kuşt."

Li aliyê din bûyerên xwekustinê di nav jinên Kurdên Sûriyê de jî pêktên. Ew jî jiber pirsgirêkên civakî û diyardeya tundûtûjiya dijî jinan xwe dikujin. Daxwiyaniya Ragehandina Sazûmana Rojavayê Kurdistanê-Kobanê ragehand ku jineke Kurd ji Kobanê xwe ligel hersê zarokên xwe kuşt.

Cîhan Reşo ya 25 salî ligel hersê zarokên xwe ji dêlva herin bazarê, ber bi rûbarê Firat ve çûn. Cîhan xwe û hersê zarokên xwe ji ser Pira Qere Qozat ku dikeve ser Firat û herdû bajarên Kobanê û Minbec bihev ve girê dide, xwe avêt xwarê. Li gel ku kurê wê yê mezin (5 salî) ji mirinê filitî jî, lê dayîk Cîhan, Fewzî yê 2 salî û Rosîle ya 3 mehî di avê de xeniqîn.

Daxwiyaniya Sazûmanê eşkere kir ku hevser û malbata wê bi tundî ligel Cîhan tevdigeriyan, heta ji bilî xwekuştinê tu rê jê re neman. Daxwiyanî zêdebûna rewşên xwekuştinê di nav jinên Kurd li Sûriyê îsal tekez kir û domand: "Jiber rewşa aborî, civakî û tundûtûjiya dijî jinan, jin xwe dikujin."

Di daxwiyaniyeke bo Rûdawê, nivîskar û civaknasa Kurd Wecîhe Evdilrehman derheqê zêdebûna bûyerên xwekuştinê di nav jinên Rojavayê Kurdistanê de diyar kir ku sedemên sereki yê vê diyardeyê tundûtûjiya dijî jinan û paşketina civaka Kurd bi giştî ye: "Di nav Kurdên Sûriyê de li gel xirabiya rewşa aborî bi awayekî giştî û belavbûna bêkarî jî zêde dibin, lê ev ji bo xwekuştinê nabe hincet. Bi baweriya min xwekuştin ne çareserî ye. Rewşên xwekuştinê li ba kesên ku hemû deriyên jiyanê li pêşiya wan tên girtin taybet in, lewma dawî jiyana xwe tînin."

# Kurdên Rojava koçê Bakur dikin




*Deriyê sînor yê navbera Nisêbîn û Qamişloyê ji bo koçberan bûye deriyê hevîyê*

**Firat Kelehki**

**Hewlêr (Rûdaw)** – Kurdên Rojavayê Kurdistanê bi taybetî yên bê nasname ji ber zordestiya dewleta Sûriyê û pirsgirêkên aborî neçar dibin berê xwe bidin Bakurê Kurdistanê. Ev çend saleke koçkirina Kurdan ya ji Hesekê, Qamişlo, Dêrikê, Tirbespiyê, Serê Kaniyê û Derbêsiyê ber bi Bakur berdewam e. Lê di van herdu salên dawî de Kurdên ku nasnamên wan jî hene koç dikin û berê xwe didin Bakur.

Piraniya wan malbatan dosyeyên wan li Rêveberiyên Nifusê yên Tirkiyeyê hene, lewma dema vedigerin û eger ji aliyê xizm û kesên wan ve alîkarî bê kirin zû nasnameyên xwe werdigrin û dikarin bi asanî kar û debara xwe bikin.

Yek ji wan koçberan Reşo Reşanê 37 salî ye. Ev çend meh in li gel malbata xwe vegeriya ye Bakur û li navçeya Nisêbînê. Ronî 12 salan xwendiye lê ji ber nasnameya wî tune neçar maye li Sûriyê barkêşiyê bike. Lê dewleta Sûriyê dev ji wan bernedaye, bi hincetên cuda cuda rehetî ji wan re nehiştiye û neçar mane dev ji hemû tiştên xwe berdin û bar bikin.

Derbarê koçberiya Kurdên Rojavayê Kurdistanê de Ronî Reşan agahî dan Rûdawê û got: "Ev 8 meh e em hatine Nisêbînê û me nasnameyên xwe standine. Berî me jî gelek malbat hatibûn û niha jî her tên. Tenê li Nisêbînê nêzîka 50 malbatan hene ku ji Sûriyê koç kirine. Herwiha li Kızıltepe, Batman, Wêranşehîr, Mersin, Hatay, Edene, Stenbol û bajarên din jî hene lê jimara wan çiqas e ne diyar e."

Ronî dibêje ku rewş li vir jî ne gelek baş e lê dîsan ji ya berê baştir e û dirêjî bi axaftina xwe dide û dibêje: "Li Sûriyê xeta sor li jêr navê te keve, êdî rehetî ji te re namîne û her roj divê tu li Rêveberiyên Asayişê bigerî. Te çikir, hûn çi dikin û pirsên bê wate bê mirov tiştek jî kiribe. Ez kesekî dinasim di dema hilbijartinên Sûriyê de tenê ji ber bi henekan gotibû belkî dengê xwe nedim Beşar Esad, ev çend sal e nexwiya ye û kes nizane li ku ye, miriye, hatiye kuştin yan na. Rewşa Kurdan li Sûriyê wiha ye."

Berê tenê Kurdên bê nasname yên ku Dewleta Sûriyê rê nedida wan li fermangehên fermî kar bikin berê xwe didan Bakur. Lê niha dike doktor, mamoste, xwendekar û parêzer jî neçar dibin koç bikin û dev ji karê xwe yê Sûriyê berdin.

Piraniya Kurdên koç kirine ji ber gelek mirovên wan li Sûriyê mane û rejîm guşarê nexe ser wan naxwazin navên xwe yên rastî bêjin. Doktorê dirana N.M niha li Bakûrê Kurdistanê doktoriyê dike û ji bo Rûdawê wiha axifî: "Karê me hebû lê bi sedema em tevî civînên partiyên Kurdî dibin û Kurdayetiyê dikin Rejîma Baas xeta sor li jêr navê me da û xweşî ji me re nehişt. Here wir îfadê bide û here dera din îfadê bide, em bêzar bûn. Jiyana me di metirsiyê de bû loma me koç kir û hatin Bakur. Kesek ji xweşî ji cihê xwe bar nake û mala xwe wêran nake."

Hinek ji Kurdên koçkirî herçiqas gazinan jî dikin, dibêjin kar nîne û rewşa wan ne baş e, lê bi giştî razî ne û qet naxwazin careke din vegerin Sûriyê. Di heman demê de gelek ji wan piştî nasnameya xwe ya Tirkiyê distînin ber bi Ewrûpa ve diçin.

Li gor axaftinên malbatên koçber, Kurdên Bakur jî bi germî pêşwaziyê li wan dikin û dibin alîkar. Mam Xelîl 65 salî ye û ji Nisêbînê ye û wiha dibêje: "Em hemû Kurd in, xwîna me yek e, lê em ji hev dûr ketibûn û niha tên ba hev ma tiştek ji vêna xweştir heye gelo?"

Wek tê pêşbînî kirin ji sala 1995'an û heta niha nêzîka 1000 malbatan ji Rojavayê koç kirine û hatine li bajarên Bakurê Kurdistan û Tirkiyê bicîh bûne.

# Mihemedê Mele Ehmed ji sirgûnê vegeriya Qamişloyê

**Dortmund (Rûdaw)** - Roja sêşemê 29'ê îlona 2009 siyasetmedar û nivîskarê Kurd Mihemedê Mele Ehmed di encama nexweşiya penceşêrê dilê wî rawestiya û çû ser dilovaniya xwe.

Ehmed di sala 1935'an de li Binxetê ji dayik bûbû. Li wir heta lîseyê xwend û li zanîngeha Şamê xwendina dîrokê qedandibû. Yek ji kesayetiyên naskirîbû di nav siyaseta Kurdên Rojava debû. Ji destpêka tevgera Kurdan ya siyasî tev di nav tevgerê de bû û beşdarî damezrandina komeleyên Kurdan yên çandî û rêxistinên siyasî bû. Ji bo vê beşdarbûna xwe ya çalak hate girtin, lê ne girtinê û ne jî çewisandinên Rêjîma Sûriyê nikarîbûn wî ji tevgera Kurdan dûr bixîne. Heta 1995'an hemû jiyana xwe ya li welat, li gel karê xwe yê mamostetiyê bi kar û xebata siyasî derbas kir. Taybetiya Mihemedê Mele Ehmed ji nav hemû siyasetmedarên Kurd ew bû, ku berê xwe da nîvîsandina dîroka tevgera siyasî ya Kurdên Rojava. Weke nivîskarekî di nav Kurdên Rojava de ku di warê siyaset û dîroka Kurdên Rojava de bû xwedî berhemên cihe û bi vî awayî bû xwedî cihekî taybet di pêvajoya pêşketina tevgera Kurd de û berhemên wî bûn jêder û çavkaniyên pêbawer ji bo hemû kesên ku bi dîrok û siyaseta Kurdên Rojava re mijûle. Li gel ku tevahiya berhemên wî bi zimanê erebî hatine nivîsandin, lê dîsa jî piraniya wan berheman ji hêla hevjîna wî Keça Kurd ve ji bo kurdî hatin wergerandin. Çend berhemên wî yên çapkirî evin: Dîroka Partî li Sûriyê, Xoybûn, Peywendiyên Kurd û Ermeniyan, Bedirxan Beg, Mîrê Botan, Mesela Kurd li Sûriyê, Osman Sebrî, Qamişlo, Kurdistan Di Navbera Dagirkirin û Serxwebûnê de



Mihemedê Mele Ehmed ji 1995'an de weke penaber hatibû Almanyayê. Ji roja hatina xwe û heta kêlîka dawî di jiyana xwe de li pey hevgirtin, lihevkombûn û yekîtiya Kurdan bû û bi taybetî Kurdên Rojava. Di nav hemû civatên rewşenbîrî û siyasî de cih girt. Wisa jî kombûnên Kurdên Rojava yên siyasî ku herdem û hergav xwedî ramana bihevrekarkirinê û yekbûnê bû. Di nav gelek rêxistin, komele û civatên Kurdên Rojava yên Almanyayê de cîh digirt. Ji wan, komîta xelata Osman Sebrî û komîta karê hevbeş ya Kurdên Sûriyê li Almanya û komela Kurdên Sûriyê li Berlînê çend mînak in.

Mihemedê Mele Ehmed wek gelek rewşenbîr û siyasetmedarên Kurdên Rojava di ciwaniya xwe de ji welat koçber bû û di tabûtê de vegeriya welatê xwe. Ew vegeriya Qamişloka ku yek kêlîkê ji bîra wî neçûbû. Roja yekşemê 4'ê cotmeha 2009'an Goristana Qidûrbeg ya Qamişlo, bû cihê herdem yê Mihemedê Mele Ehmed.

# "Kurdên li Belçîkayê dest bi bazirganiyê dikin"



Serokê Entîtûya Kurdî ya li Brukselê Derwêş Ferho dibêje ku wê li Gurcistanê liqe Enstîtûyê vekin.

**Köln (Rûdaw)** - Vê heftê Rûdaw danasîna Entîtûya Kurdî ya li Brukselê dike. Serokê wê Derwêş Ferho ku ji sala 1996'an heta îro serokatî dike û beriya wê demê jî sekreteterî dikir, ragihand ku ew niha amadekariya enstîtûyeke nû li paytexta Gurcistanê Tiblîsê dikin. Li ser beşên din jî xebatên wan berdewam dikin; projeyên wan ên demkurt û demdirêj hene û Ferho lê zêde dike: "Di nava her xebata ku ji gel û welatê me re baş e cihê xwe bi berpirsiyarî distînin." Ferho herwiha bawer dike ku herçiqas li Belçîkayê Kurd kêm in jî ew bi hin encaman serbilind in: "Eger mirov bi gelemperî li xebatên me û encamên wê binêrê, li gor bir û baweriya min, xebata herî baş bi encam li Belçîka hatiye kirin û em bi vê yekê serbilind in."

***Em dixwazin tu ji me re xwe bidî nasandin. Derwêş Ferho ki ye? Ji kengê ve tu li Belçîka dijî? Çi xwendiye?***

Ez ji gundê Mizexê, girêdayê Midyadê, herêma Torê me. Paş qedandina xwendina xwe ya navîn (Lise) çend mehan li Stembolê mam û pey re hatim Belçîka. Herçend e niyeta min çûna Swêd bû, Belçîka bû nesîbê min û di sala 1977'an de ez li bajarê Leuven, paş re jî li Bruksel bi cî bûm. Di ber xebatê re min Enstîtûya Bilind ya Zanistiya Readaptasyonê (Hoger Instituut voor Readaptatiewetenschappen) qedand. Sê sal in.

***Ev çend sal in tu serokatiya Enstîtûya Kurd a li Brukselê dikî?***

Sala pêşîn ku me Têkoşer (Yekîtiya Karker û Xwendekarên Kurd li Belçîka) ava kir ez salekê bûm serokê wê. Di 1989'an de me navê Têkoşer guhert û bû Enstîtûya Kurdî ya Brukselê. Heta 1996'a ez wek sekreterê Enstîtûyê mam, ji 1996'an û vir de karê serokatiya wê dikim.

***Enstîtûya Kurd a li Brukselê çi kar dike? Kengê û ji bo çi ava buye, ki ava kiriye?***

Jib o karê me, armanca xebata me baş were têgihiştin dive ku dûr û dirêj bêjim.

Enstîtûya Kurdî ya Brukselê rêxistineke civakî û çandî ye. Ew ne girêdayî tu partiyeke siyasî ye. Di Cotmeha sala 1978'an de, bi navê Têkoşer - Yekîtiya Karker û Xwendekarên Kurd li Belçîka û paşê di Gulana 1989'an de, bi navê Enstîtûya Kurdî ya Brukselê ava bûye û ji aliyê wezaretên çandê ya Frensizi (Herêma Civaka Frensiz li Belçîka) Flamanî (Herêma Flaman li Belçîka) di nava çarçewa "perwerdekirina gelemperî ya daîmî" de, bi awayekî fermî hatiye pejirandin û alîkariya maddî distîne. Du armancên enstituyê hene: alîkirina Kurdên ku li Belçîka dijîn, ji bo ku karibin di civaka Belçîkî de ciheki baş bistînin ("intégration"), bê ku nasnameya xwe ya çandî hunda bikin û agahdarkirina Belçîkî, Ewrûpî û kesên din li ser dîrok û çanda kurdî.

***Hûn projeyên çawa lidardixin? Li ser çi lêkolînan dikin?***

Em projeyên xwe, li ser esasê pêdiviyên gel û welatê xwe lidardixin. Bijartin û pêkanîna kar û xebata me bi temamî di wê çarçowê de pêk tê. Heta niha, xebata belavkirina agahdarî, sensibilizasyon, motivekirin, danasîna pirsa Kurd bi hemû aliyên xwe ve hatiye birêvebirin. Wek siyasî, çandî, nivîsa Kurdî, muzîk û folklor.

***Heta niha we çi projeyan temam kiriye û encama wan çi ye?***

Ji bo ev pirs baş were bersivdan û têgihiştin dikarim wiha bêjim. Pirsgirêka Kurd di dema destpêkê de li Belçîka pir kêm dihate nasîn. Li hemû Ewrûpa jî wiha bû. Li temamiya Ewrûpa ev mijar û tewra Ewrûpiyan ber bi rewşeke pozitîv diçe. Lê li Belçîka hê baştir e. Eger mirov bi gelemperî li xebatên me û encamên wê binêrê, li gor bir û baweriya min, xebata herî baş bi encam li Belçîka hatiye kirin û em bi vê yekê serbilind in. Gelo bes e? Na, divê em hê zêdetir û baştir kar bikin.

***Niha di destê we de tu proje hene?***

Xebata me ya rojane her dimeşe. Bi 5 xebatkar û hevalbendên xwe deriyê Enstîtûyê her roj vkiriye û kr berdewam e. Di nêzîk de, 5 û 6'ê Mijdar 2009'de, tev Komîsyona Ziman û Perwerdê, Enstîtûya Kurdî ya Almanya, Konferansa Ziman di Parlementoya Flaman li Brukselê de pêk tînin. Hin projeyên din jî hene lê hê zû ye li ser wan were axaftin. Di nêz de ewê werin nivîsîn.

***Li derveyî Belçîka qet karên we hene?***

Belê hene. Li Gurcistanê jî liqê Enstîtûyê vedibe. Di navenda Tiblîsê de avahî heye ku bi malitî me stendiye û xebat wê were kirin.

***Çima li ciheki din na, Tiblîs?***

Ev bû 18 sal ku çûn û hatina min ya nav Kurdên Kafkasê heye. Salê sê-çar caran diçim wê heremê. Du sedem hene; ji ber ku ez nikarim herim Kurdistanê, Kurdên li Kafkasê tenê diminin ku ez bikaribim xwe di nav Kurdan de bibînim.

Li herêma Kafkasê di sedsala dawîn de Kurdan di gelek waran de ciheki giring stendiye. Xwedî arşiveke mezin in. Ji sedema belavbûna Sovyeta Berê gelek tiştên Kurdên Kafkasê ji ber bi hundabûnê diçin. Me di destpêkê de, tevî çend akademiyenên Kurd li Ermenistanê xwest tiştekî bikin ku arşîva Kurdan li ciheki kom bikin. Lê ji ber çend sedeman tenê li Tbilisê ev yek mimkûn bû. Di vê xebatê de alîkariya moralî ya xanima serokê Gurcistan, Sandra Roelofs ji heye. Em ji çend salan û vir de pê dilebikin ku vê yekê pêk bînin. Lê heta niha, ji kêmasî û tunebûna imkanan me nikarî tiştekî ciddî ava bikin.

***Têkiliyên we bi partî û saziyên Kurd re çawa ye?***

Têkiliyên me bi hemû partî û saziyên Kurd re li ser esasê wekheviyê hene. Wek ku min berê jî gotibû, em rêxistineke Kurdî ne û Kurdistanî ne. Peywendiyên me li ser van esasan bi hemûyan re hene. Em bi gişan re jî dikarin xebatke xweş bikin.

***Çiqas Kurd li Belçîkayê dijîn? Ji kîjan perçeyê Kurdistanê mirov gelek in? Potansiyela wan çi ye?***

Li gor bir û baweriya min li Belçîka nêzî 40 000 Kurd hene. Piraniya wan ji Bakûrê Kurdistanê di salên 60'î de û beşa din jî salên 80'î de hatine.. Ji Başûrê Kurdistanê jî çend hezarek hene. Kurd li Belçîka hem kêm in û hem jî bi muqayeseya welatên din di aliyê Kurdîtiyê de ne pir xurt in. Li piraniya welatên din yên Ewrûpa, têkoşîna çekdarî ya PKK, guhertineke mezin pêkanî. Li Belçîka ev guhertin giran meşiya. Sedema wê jî ew e ku kêm Kurd li Belçîka hene. Piraniya Kurdên li Belçîka karkeriyê dikin. Hêdî hêdî Kurd jî dest bi bazirganiyê dikin. Heta niha vê yekê ji baş didominin.



# "Wê li Almanya rewşa betalên Kurd xirabtir bibe"

**İsmet Siverekli**

**Rûdaw (Berlin)**- Saziya Kurd ya bi navê Kurdisches Zentrum (Navenda Kurdî), ev 25 sal in li paytexta Almanyayê, li Berlinê ji bo Kurdan li ser pirsgirêkên malbatî, deyn û integrasyonê xebata amojgariyê dike. Komeleya Navenda Kurdî tenê digel vê xebatê namîne, çalakiyên civakî ji li dar dixe. Di nava van çalakiyên civakî de beşên wek spor, perwerdeya zimanê kurdî, huner û danustandinên bi civaka Alman re jî hene. Tevahiya van çalakiyan ji aliyê Senatoya Berlinê, beşa Întegrasyonê ve tên fînansekirin. Herweha, ji bo afirandina sempatiya gelê Alman a li hember civaka Kurd bernameyên çandî pêşkêş dike û dewlemendiya çand û hunera Kurd bi civaka Alman dide nasîn.




Berdevkê Kurdisches Zentrum İbrahim Okutucu

(Wêne: Rûdaw)

Em bi navê Rûdawê çûn navenda vê saziya Kurdî û me bi nûnerê rêveberiyê, bi Ibrahim Okutucu re sohbetek pek anî. Okutucu ji bajarê Amedê ye û di sala 1980'an de wek xwendekar hatiye Almanyayê û li vir di nava saziyên Kurdan de dest bi xebatê kiriye. Okutucu di sala 1996'an de li Navenda Kurdî li beşa projeyan de xebitiye û heta îro vê xebatê dimeşîne.

Sohbeta me bi pirsa damezrandina saziya Kurd dest pê dike: "Kurdisches Zentrum di sala 1984'an de li paytexta Almanyayê hat damezrandin. Ji bo ku li diyasporayê hemû perçeyên Kurdistanê bên temsîlkirin, navê wê weki Navenda Kurdî hatiye danîn."

Okutucu di derbarê mebesta damezrandina Navenda Kurdî de dibêje, ku navend ji bo alîkariya jiyana rojane ya Kurdên diyasporayê hatiye damezirandin û ji bo kêmkirina astengiyên jiyana rojane yên Kurdên Berlinê şêwirmendiyê dike. Kurdên Berlinê di qada fermî de ji vê amojgariyê îstifade dikin û karên xwe yên burokratîk bê astengî pêk tînin: "Em di qada burokrasiyê de geleki alîkariya koçberên Kurd dikin. Pirsgirêka herî mezin ya Koçberên Kurd pirsgirêkên ziman e û nezanîna ziman di astên fermî de li pêş wan gelek astengiyan derdixine. Bi alîkariya xebata me, koçberên Kurd pirsgirêken xwe yên bi vî rengî çareser dikin. Em ji bo meqamên fermî, di nivîsandina daxwaznameyan de alîkariya wan dikin. Em ne tenê vê yekê dikin, em hevdîtinên koçberên Kurd yên bi civaka Almanî re ji organîze dikin."

Navenda Kurdî li gor rêbaza xwe projeyan çêdikê, pilan dike û tetbîq dike: "Navenda Kurdî heta îro gelek proje çêkiriye. Naveroka projeyên me di derbarê integrebûn û nasandina çandî ya Kurdî bû. Di serî de gelê Alman û partiyên wan yên siyasî gelê Kurd baş nasnakin. Ji bo vê yeke, me bi gele Alman, Kurd dan nasandin, danûstandin organize kirin û dikin. Di encama van danustandinan de çand û pirsgirêka Kurdî da nasandin."

Saziya Kurd di navenda xwe de gelek kursan ji dide: "Em herdem gelek kursan organize dikin. Heta îro; kursa zimanê kurdî, tirkî, erebî, almanî û înglizî, komputer, tembûr û gelek kursên din me organize kirine."

Komeleya Kurd di gelek beşan de xebatên amojgariyê dike: "Amojgariya me di warê civakî, penaberî, mafên rûniştinê û perwerde tê kirin. Em herwiha alîkariya koçberên ku ji kar tên avêtin dikin ku careke din bikevin kar."

Navenda Kurdî tenê bi van bizavan namîne: "Em ji bo pirsgirêkên jinan, yên malbatî û xwendekarên Kurd ji alîkariyê dikin. Ji bo ku xwendekarên Kurd li dibistanan bi zimanê zikmakî perwerde bibin, em xebatê dikin. Ji bo ku koçberên Kurd xwe ji pirsgirêkên deynan xelas bikin, em amojgariyê dikin û di qada fermî de ji bo van kesan dibin ling û dest."

Navenda Kurd, têkiliyên dostanî li gel hemû partiyên Alman û Kurd daniye: "Têkiliyên Navenda Kurdî bi hemû partiyên Alman û Kurd re baş in. Bi saya van têkiliyan berjewendiyên koçberên Kurd li ber çav tên girtin û doza Kurd tê nasandin."

Ji bo ku koçberên Kurd di proseya integrasyonê de bibe xwedî gotin, Navenda Kurdî xebatê dike: "Kurdên li Almanyayê, li ser esasê hemwelatiyên Tirkiyê, Îraqê, Suriyê û Îranê tênê jimartin. Tenê gava ku îltîca dikin, wê demê weke Kurd tên nivîsandin. Ev ditin li ber integrasyonê gelek astengiyan çê dike. Koçberên Kurd divê li integrasyonê bi çaveke pozitîf binêrin û wusa lê nêzîk bibin. Divê Almanya Kurdan bi nasnameya Kurd nas bike. Ev jî bi awayek erênî rê li ber integrasyonê vedike. Kurd li vir bi cîh bûne, di hemî aliyên civakê de kar dikin. Zarokên wan li vir ji dayik bûne, li vir mezin bûne û çûne dibistanê. Dihate gotin ku gava şer li Kurdistanê raweste, wê Kurd vegerin. Lê belê ev ne rast e, Kurd venagerin. Êdî bûne perçeyek ji vir, çûna wan ya Kurdistanê tenê salê carek, an du car e, bi kurtî ew êdî Berlinî ne, Almanyayî ne."

Okutucu di derbarê giringiya integrebûna Kurdan de weha dibejê: "Divê em li vir mafê xwe biparêzin, wekhev bijîn, beşek ji vê civakê bin, lê civakekê li ber civakeke din çênekin. Her weha em çand, huner û zimanê xwe bidin jiyandin. Çanda xwe nas bikin û lê xwedî derkevin. Her weha divê em ji bo naskirina gelên din, çandên din vekirî bin û bi wan re danûstandinan pêk bînin."

Rêveberê Navenda Kurdî Okutucu li ser hilbijartinên giştî yê Almanyayê ji nêrînên xwe anîn ziman û diyar kir ku di hilbijartinên Almanyayê de partiya kevneparêz CDU û partiya lîberal FDP bi ser ketin û wê hikûmeta koalîsyonê damezirînin: "Berlin di Almanyayê de bajareke ku endustriya wê herî kêm e. Ji bo vê yekê nisbeta betaliyê li vî bajarî zêde ye. Di nav betalan de hêjmara Kurdan jî bilind e. Hikûmeta kevneparêz û lîberal wê mafên betalan qut bike. Bandora vê yekê wek li ser hemû betalan wê li ser Kurdan jî çê bibe. Ji bo vê yekê wê rewşa van kesan xerabtir be."

### Li mişextiyê dildareka kurmancî: Lava Derwêş:

# "Roj çêbûn ku xwe bispêrim mirinê"

**Salihê Kevirbirî**

**Stenbol (Rûdaw)** - Kesên ku carcaran bala xwe didin ser malperên internetê, dibînin ku hinek jin û keçên Kurd an -ku bi qasî tiliyên destekî ne- bi gotar, kurteçîrok, helbestên xwe li pêşberî me ne. Kêm in, lê mala wan ava xweş jî dinivîsin!

Lava Derwêş yek ji wan navan e ku carinan bi kurteçîrokên xwe, carinan jî bi helbestên xwe yên xembar pêşwaziyê li me dike. Ew bixwe ji Qamişloyê ye û bêhtirî panzdeh sal in ku "terkeserê dinyayê" bûye!.. Ew niha li bajarekî Holandayê dijî û hewla geşedana kurmancî, xema wê ya sereke ye. Bi kurmancî difikire,, û dikene, bi kurmancî digirî û dinivîse. Bi rastî ew "dilda- reka kurmancî" ye li mişextiyê. Lava Derwêş, xwediya jiyaneke têrkeser e. Em zêde dirêj nekin. Werin em bi hev re guh bidin hinek beşên ji vê jiyanê...

***Zarokatiya te çawa tê ber çavê te? Tu bêriya zarokatiya xwe ya li Qamişloka Evînê dikî?***

Zarokatiya min li gel xwişk û birayên min bi çîrokên "dêw û pîrevok" û efsaneyan bi navê "şengê û pengê" û "hecî rovî", bi xeyalên şêrîn û bêguneh, bi lorandina diya min, bi sirûd û helbestên bavê min dixwendin, bi lîstika li kulanên taxê, bi hejmartina stêrkan di şevên havînê de, li serê ban û li ber dengê çirçirkan... Bayê nişkivîn ê hênik, rûyê me dimestand. Her wiha ez stêrkên ku ber bi sînor ve direviyan û bi ronahiya lempeyên Nisêbînê re dibûn yek, tu caran ji bîr nakim. Gelek bîranînên wisa ku nayên jibîrkirin.

***Gelo roja tu ji Qamişloyê derketî tê bîra te? Tu kengê pê hesiyayî ku aliyekî dilê te li wir maye?***

Ji Qamişloyê derketim û min zanîbû ku ez bêyî wê nikarim bijîm. Roja min zarokatiya xwe bi xwe re bir û ji wir derketim, min tenê dizanîbû ku xatirxwestineke ji bo demekê ye. Lê dîsa dilê min dikir ji nav singê min derkeve. Tê bîra min ew roj... (Hinek kelogirî dibe, girîn dikeve qirikê, paşê berdewam dike) Herkes digiriya... Cara pêşî bû ku min dîtit bavê min digiriya. Ez wê demê nexweş bûm, lê min nizanîbû êşa pençeşêrê li min peyda bûye û rojên min hindik mane. Min dixwest xwe bigihînim welatekî ku hêvî lê hebe. Min dizanîbû dilê min û jiyana min li bajarê min maye, bi wê hêviya vegerê min dilê xwe aş dikir.

***Ev çend sal in ku tu penaber î? Gelek caran dilê te maye, tu melûl bûyî, te xwe spartiye hêsirên çavan... Herî zêde bûyer ango qewimîna ku kezeb li te peritand çi bû?***

Ev nêzîkî 17 sal in ku ji welat derketime, bêyî ku ew rojekê ji dilê min derkeve! Nizanim, êşa min, ji êşa gelekan zehmetir e an na. Ez bawer im ku êş, bi êşan nayê pîvandin. Ez di 16 saliya xwe de, ji welat derketim û wê demê êşa pençeşêrê ez wekî dêwekî dixwarim. Ji ber ku çare nemabû, berê min kete van rêyan. Nexweşî, tenêbûn û gelek tiştên din. Ez di rêya mirinê û windabûnê re derbas bûm. Û min êşa xwe li pey xwe dixiriqand çend welat û bajaran. Di avê re derbas bûm. Di nav berfê de meşiyam, di ber seg û fîşekên sînoran re min xwe vedizî. Lê her min hêz dida xwe. Ne ji vê hêza min a viyanê bûya, dibe ku ez niha ne li vir bûma.

***Li Almanyayê şerê min û mirinê destpêkir. Heta niha jî nizanim kî bi ser ketiye.***

Lê roja ku biryar hate standin ku êdî çare nemaye, divê lingekî min were birrîn, pençeşêr xwe gihandibû gelek cihên din û her belav dibû, wê rojê ez di kêlîka wê de pir aram bûm , lê paşê min nepejirand. Ji ber ku te

menê min, li bin 18 salan re bû, mafê min nebû ku ez nepejirînim. Lewre dê û bavê min erêniya xwe dabûn. . Wan ez bi zorê, di nav girî û hawarên min de birim oda operasyonê. Êdî jiyana min hate guhertin. Min nizanîbû li ser xwe bigirim an li ser malbata xwe. min baş dizanî ku ew di nav agirekî çawa de ne. Ez zêdetir li ber wan diketim, li ber hêsirên diya xwe diketim. Gelek caran sûretê diya min dihat ber textê min ê li nexweşxanê, çawa ku dengê wê dihat, xwedêgiravî ji kêf û coşê min xwe diavêt hembêza wê. Lê min hew dîdit ku ez ketime erdê û bi tenê me... Pir zor bû!

Buyera din ku kezeba min şewitand, ew roj bû ku perçeyek ji laşê min, ji canê min veqetiya; ew roj bû ku roja min bihîst bavê min çûye ber rehma Xwedê. Piştî 14 salan bi hêviya hevdîtinê, di wan rojên ku kaxezên min çêdibûn û dengê bavê min ku hema digot; "De were keça min, ma tê kengî werî?" Bavê min ê xoşevîst ku di wan salên zehmet de aramî dida min û digot; "Sebir bike keça min, çiya çiyê nabîne lê însan insên dibîne... Li hêviya min nema û bi wê hesretê bar kir û çû...

***Li mişextî û penaberiyê herî zêde te bêriya çi kir/tu bêriya çi dikî?***

Min bêriya wan kolan û riyên Qamişloyê dikir; toz û germa havînan, heriya zivistanan, dengê erebokên firoşkaran û qelebalixa bi kurmancî... Bêriya wan sibehên zû, gava li ber dengê dê û bavê min, ku dema hêj em di xewa şêrîn de bûn, di şerqa sibehê de, li bin siya darê qehwe vedixwarin... Bêriya bêhna axa bexçê reşandî, xwişk û bira, mala ji mirovan tijî, rojên Newroza Kurmancî û amadekariya cejnê, hevalên ku gelek bîranînên xweş bi wan re hene û bêriya gelek tiştên din dikim ...

***Car çêbû ku te xwest xwe bispêrî mirinê?***

Erê, helbet erê!.. Roj çêbûn ku min xwe bispêrim mirinê. Di rojên teng de li vê dûniyê ku kesên nêzîk jî, min bi qedera min re tenê dihiştin û berê xwe diguhertin. Di rojên ku min gav davêtin û diketim bê ku kesek bi destê min bigire... Lê na, Xwedayan jî, piştî dabûn min û xwe spartibûn bêdengiyê.

***Rojek hat nivîsê xwe gihand hawara te ne wisa?***

Min hestê xwe dinivîsin jixwe, lê kêm kesan pê dizanî. Min xwe pê aş dikir. Tiştên ku min nikarîbû jî keseki re bêjim, min di lênûsk an deftera xwe ya rojane de dinivîsand. Lê ew jî bû sedema rojek reş jî min re. Min ew defter qetand û nema nivîsand. Piştî demekê dîsa min hewl da ku pexşan û çîrokan binivîsim, carinan helbest jî dadirêjtin ser kaxêzê, lê min ew ne diweşandin.

***Paşê te dest bi nivîsandinê kir. Tê bîra min ku yekem car min nivîsa te, di malpereke kurmancî de dît, wê rojê, ligel şaşwaziyê kêfxweş bibûm... Yekem car nivîsa te –çi pexşan, çi helbest- li ku hate weşandin? Tu pêrgî rexneyên çawa hatî?"***

Yekem helbesta min bi kurmancî di kovara "Pênûs" de hate weşandin. Bawer im, sal 2000 bû. Lê baş nayê bîra min. Berî wê jî, di sala 1995 û 1996'an de çend helbest û pexşanên min, di rojnameya "Xebat" de hatin weşandin, lê ew ne bi Kurdî bûn. Ji sala 2004'an ve, hinek helbestên min di malperên interneti de belav bûn. "Qêrîna Adarê" û "Hebûn" di malpera "Amûdê" de hatin weşandin. Ew cara yekem bû. Di malpera "Tîrêj" û "Rojava" de jî çend kurtehelbestên min hatin weşandin. Niha jî ez di malpera "AvestaKurd " de dinivîsim.

Destpêkê rexne li nivîsên min nehatin kirin. Piştre gelek name ji xwendevanan ji min re hatin. Dilxweşiya xwe bi nivîsên min dîyar dikirin. Helbet ez kêfxweş dibûm û min dixwest her berdewam bikim.

Lê rewşa min pir zehmet bû. Jiyana min tevlihev bû û ez tim li ber çûyinê bûm. Min digot; "Îro-sibe ezê bimirim!" Hin caran ez bi hêz dibûm û gelek caran jî min xwe disipêrt bêdengiyê. Zanî hesteki çawa bû?..

***Çawa?***

Çawa ku tiştek di hundirê min de vemirî be, qerisî be, teyisî be... di navbera nivisandina proje-helbest û gotaran de, min her dinivîsî. Di ber re jî min zimanê Kurdî dixwend. Heta niha jî xwe fêrî Kurdî dikim. Ji ber deryaya zimanê me gelekî mezin e. Her ku ez hînî tiştekî dibim, ez bi xwe dihesim ku gelek tiştên din hene ku ez nizanim.

***Nivîsandina kurdî, helbest, gotar li cem te çawa dikemilin? Heta ku berhemeke te bikemile/bixemile, di merhaleyên çawa re derbas dibe?***

Ramanek an hestek dihebike ser rûpelê bi kurmanciya xwerû, ya ku em li malê pê dipeyivin. Çawa derket ez wisa dinivîsim. Paşê li bêjing û moxila rastnivîsê dixim. Gotinekê radikim, yekê datînim. Her wiha hewl didim bi kurmanciya xweşik û herikbar bixemilînim. Ez gelek caran lê vedigerim û jinûve dixwînim. Heta çi radeyê bi ser dikevim, nizanim. Ev jî, êdî ji xwendevanan re dimîne.

***Gelo hêmayên te zêdetir li ser çi ne?***

Gelek caran xwe wekî zarokekê dibînim ku hê mezin nebûye. Ji ber wê yekê jî, bêhtir li ser wê bingehê dinivîsim. Cihê zarokatiyê, cihê peyva yekem û hezkirina yekem, girîn û hawara bajarê ku ji me xeyidî ye, cihê dayikên bendewar. Jinên ku li ser tenûran birînên xwe vedibêjin, zarokên dane pey xewn û xeyalên xwe, xaka xwîngul û şînbiharan. Welatê evîn û rengên qedexekirî...

***Niha derfeta çûyîna te heye gelo? ?***

Ez yekem car berî du salan çûm Qamişloka xwe... Min dixwest berî her tiştî herim ser gora bavê xwe. Lê min bi paş dixist. Ji ber min dixwest her tişt mîna berê bimîne. Guhertin bi min zor bûn. Çavê min li her qorziyekê ji xênî bû, dengê wî jê dihat... Bi hêviya ku destê xwe deyne ser milê min, yan jî bi hêviya ku dengê wî ji devê derî be... Min dixwest hema bang bikim û bêjim; "yaaboo yabooo!" Min dixwest milyon car wê gotinê bibêjim. Dizanî? Min ev yek jî pêk anî...



***Çend rez ji helbesta Lava Derwêş a binavê Hebûn:***
*Navê min / Ser pişta perwanekê / Ji şewata adarekê / Ji êşa demê afirî / Nav sinorên avzêmkî / Kuçberiya xwe kuçber dikim / Birîna te hildigirim / Bajarê min / Bi ser keserên xwe de / Têkel dikim*

# "Tirkiye ji pêşketina Kurdan ditirse"

**Welat Badikan**

**Stenbol (Rûdaw)** - Li Tirkiyê wezifedar û endamên artêşê di derbarê Rojhilata Navîn û herêma Kurdistanê de bi giranî weke hev difikirin. Ev fikir û ramanên wan yên yek tipî dema teqawut dibin jî bi awayeke tund berdewam dikin. Lê Ümit Kardaş ku di dema darbeya leşkerî ya 1980'an de wek hakimê leşkerî wezîfe kiribû ev kevneşopî şikand û mijarên ku weke tabû dihatin dîtin, bi wêrekî anîn ziman. Ümit Kardaş li ser nêrîn û fikarên Tirkiyê yên di derbarê Rojhilat Navîn û Herêma Kurdistanê de bersîv da pirsên me.

***Dema mirov ji Tirkiyê dinêre, Rojhilata Navîn çawa xuya dike?***

Ez di wê baweriyê de me ku hest û fikrên Tirkiyê yên di derbarê Rojhilata Navîn de tevlihev in. Ez bawernakim ku gelên bi sedhezaran salan di bin banê imparatoriyekê de bi hev re jiyabin di derbarê hev de xirab bifikirin. Lê belê Komara Tirkiyê li ser bingeha 'yek nasnemeyî' rê li ber nijadperestiyê vekir. Ev mantalîte hem li hundur û hem jî li derveyî welêt bû sedemê pirgirêkên bingehîn. Hem di siyaset û burokrasî û hem jî di medyaya Tirkiyê de helwestên ideolojîk yên di derbarê gelên Kurd û Ereb de, mirov nikare bibêje erênî ne. Li Tirkiyê wisa tê zanîn ku gelên xwe weke Tirk nabînin, ji aliyê Amerîka û welatên Yekîtiya Ewrûpayê ve li hemberî wan tên bi karanîn. Heta carnan ev gel di kategoriya 'dijmin' de jî tên dîtin. Li Tirkiyê hin derdor di wê baweriyê de ne ku Tirkiye wê di çarçoveya Projeya Mezin ya Rojhilata Navîn de were perçe kirin. Hin derdor jî hene difikirin ku ew dikarin ji vê projeyê sûd bigirin. Di rastiyê de, Tirkiye bi welatên Rojhilata Navîn re xwedî pêwendiyên xurt yên dîrokî, çandî û aborî ye. Şert û mercên îro rê didin ku Tirkiye bi van welatan re di warê demokrasî, huquq, azadî, aborî û çandî de, sererast tekiliyan deyne û polîtîkayên nû biafirîne. Lê ji bo vê yekê şertê yekem ewe ku Tirkiye di serî de pirsgirêka Kurd, pirsgirêkên xwe yên bingehîn çareser bike, baweriya xwe bi welatên Rojhilata Navîn bîne û herwiha bawerî jî bide wan.



*Hakimê Leşkerî yê berê Ümit Kardaş*

***Gelo têkiliyên organîk yên di navbera Tirkiye û Rojhilata Navîn de, dikare bi bandora derve werê xirab kirin?***

Tirkiye û Rojhilata Navîn bi hev re girêdayî ne, ev girê bi tesîra derve nikare were vekirin. Ev girêyeke dîrokî, çandî û aborî ye. Lê ev yek bi tekiliyên sererast dikare were şidandin. Ji bo ku Tirkiye bi hestên xwe yên rastîn bi van welatan re bikeve nava tekiliyê divê qalibên xwe yên ideolojîk bişkîne û derbasî demokrastiyeke rastîn bibe. Bê guman Rojhilata Navîn, hem ji ber kemasiya demokrasiyê û hem jî ji ber ku çavkaniyeke girîng ya enerjiyê ye, bala Amerîka û welatên Yekîtiya Ewrûpayê dikişîne ser xwe. Lazim e Tirkiye jî xwe ji pêşhukmiyan baqij bike û ji herêmê re hembêza xwe veke. Zimanekî tehditkar zirarê dide têkiliyên dîrokî û însanî.

***Ji Tirkiye, bi kijan çavî li Başûrê Kurdistanê tê nêrîn?***

Tirkiye pêvajoya li bakurê iraqê ji xwe re wek xeter dibîne. Kadroyên siyasî herçend hewilbidin li gor rastiyê tevbigerin jî, burokrasiya ekserî naxwaze bi herêmê re têkilî were danîn. Tirs û fikara herî mezin ew e ku pirsgirêka Kurd ya li Tirkiyê ku îro rê li ber çareseriya wê hatiye girtin, bikeve bin tesîra sazîbûna Bakurê Îraqê û bi bi awayî daxwazên Kurdan hê bêtir werin guftûgo kirin.

***Saziya leşkerên Tirk OYAK jî aliyek ve hem li Başûrê Kurdistanê faaliyetên aborî dimeşîne û hem jî li Tirkiyê dijberiya herêmê dike. Ev ne nakokî ye?***

Li Tirkiyê rastiyek heye ku artêş wek partiyeke siyasî ya li ser desthilatdariyê tevdigere, nakeve hilbijartinan, polîtîkayan diafirîne û saziyên bingehîn yên demokrasiyê di bin kontrola xwe de digire. Çareseriya pirsgirêka Kurd çiqas dereng bikeve, pozisyona leşkeran ewqas bihêz dibe. Ger rojekî mafên Kurdan bi qismî were dayîn jî, ekser ji di nav de, hin derdor hene ku dixwazin Kurdan tim weke xeterek ku dikare Tirkiyê perçe bike bibînin. Lewra wan berjewendiyên xwe bi vê atmosferê ve girêdane.

Ev derdor herwiha ji ber ku bi rêya saziya OYAK'ê li herêmê di nava faaliyetên aborî de ne, carnan jî hin tiştan re çavên xwe digirin. Dema ku desthilatdariya AKP'ê di derbarê herêmê de daxuyaniyên nerm dide, ji wan re dengê xwe nakin. Lê belê ji bo ku pozisyona xwe ya serdest ya li Tirkiyê biparêzin û kêmasiyên xwe yên di 'tekoşîna li hember terorê' de veşêrin, li dijî herêmê dikevin nava helwestên dijmînî. Helbet ev nakokî ye.

10 salên pêş me, bi temamî girêdayî helwest û tevgera Tirkiyê ya di derbarê demokrasiyê de ye. Ne mumkune ku Tirkiye karibe vê rewşa xwe ya îro bi taybetî jî di mesela Kurd de, bi qasî 10 salên din berewam bike.

# Jenerator ji nav bajarên mezin radibin


Wezîrê Eletrîkê Wuşyar Siweylî

**Hewlêr (Rûdaw)** – Nebûna hilberîna elektrîkê ku li Kurdistanê pirsgirêkeke ciddî ya rojane û jiyanê ye, bi xebat û projeyên nû êdî ber bi çareseriyê ve diçe. Wezîrê Eletrîkê yê Herêma Kurdistanê Wuşyar Siweylî di vê derbarê de pirsên Rudawê bersivandin.

***Dema kabîneya 5'mîn pêkhat û wezareta elektrîkê dirustbû, berhema elektrîkê çiqasbû û niha berhema we çiqas e?***

Wezareta elektrîkê di sala 2006'an dirust bû. Wê demê tenê stasyonên herêma Derbendixan û Dukan hebûn û ji ber sedema kêmbariya berf û baranê kêm hilberînê dike. Mînak di sala 2006'an de bi giştî 186 megawatên elektrik ji herdû stasyonan hatiye hilberîn. Sala 2007'an de dîsa ji ber sedema kêmiya berf û baranê, ew rêje hat xwar û bû 136 megawat. Sala 2008'an ji bû 64 megawat. Wate ji sala 2006'an heta niha 126 megawat ji berhema elektrîka wan herdû stasyonan kêmbûne. Eger em hilbirîna elektrîka sala 2006'an ligel ya sala 2009'an raberihev bikin, emê bibînin ku bi giştî li sala 2006'an 186 megawatên elektrîkê hatine hilberandin, lê ev sal tevahiya berhemanîna elektrîkê gihiştiye 565 megawatan, an ku bi rêjeya ji sedî 315 berhema elektrîkê zêde bûye. Tişta ku di van 3 salan de, di warê elektrîkê de hatiye kirin, rewşa Herema Kurdistanê ji aliyê elektrîkê ve ji Îraqê baştir bûye. Ev hemû ji bi piştevaniya rasterast a Serokatiya Civata Weziran û Serokê Hikû- metê, Nêçîrvan Barzanî hat kirin. Herweha wezareta samanên siruştî ji bi rêya encamdana Projeya Gaza Kormor alikariyeke mezin ji bo çareserkirina pisrgirêka elektrîkê kir. Bi dawî hatina wan projeyên ku me dest pê kiriye, Herema Kurdistanê heya sala 2020'an rastî wê pirsgirêka elektrîkê nabe ku me di salên borî de ditibû.

***Eger ew hemû projeyên ku dest pê hatine kirin, temambûn, wê Herema Kurdistanê beşa xwe ya elektrîkê hebe?***

Eger projeyên ku me dest pêkirine temambin, ez di wê baweriyê de me ku wê bêtirî pêwistiya Herema Kurdistanê, elektrîka me hebe û belkî em bigihijin wê asta ku em alîkariya parêzgehên din ên Îraqê jî bikin.

***Projeya elektrîka istasyona Helmê ya Xebat ku ji aliyê Şirketa Niştimanî ya Nefta Koreya KNOC butçeya wê hatiye misogerkirin, gihaye kû derê?***

Ew stasyon ku berhemanîna wê 600 megawat e, wê bi dû qonaxan bigihîje wê astê. Em niha ligel şirketa nefta niştimanî mijûlî qonaxa yekem in li gor wê programa ku ji aliyê KNOC hatiye danîn. Qonaxa yekem wê di sala 2012'an de temam bibe û sala 2013'an de wê dest bi hilberînê bike. Hingê wê salane 300 megawat elektrîk bê bidestxistin. Başiya vê stasyonê jî ew e ku ew stasyoneke helmî ye ku kêm welatan hene û bê ku hebûna stasyoneke weha bikarin ji bo demeke dûr û dirêj çareseriya pirsgirêka elektrîkê bikin.

***Rexne têne kirin ku çima hikûmet bi xwe elektrîkê nahilbirînê...***

Li piraniya welatên dinyayê, sektora elektrîkê ber bi taybetbûnê ve diçe. Li welatên Ewrûpayê an jî li welatekî wek Tirkiyê mirov dibîne ku gelek projeyên elektrîkê ji aliyê sektora taybet ve tên danîn. Ev tişt ji aliyê teknîk û aborî ve di berjewenda hikûmetê de ye.

***Hefteya borî, hat gotin ku wê generatorên elektrîkê yên taybetî bên rakirin, gelo kengî pêwistiya Kurdistanê bi wan jeneratorn namîne?***

Em niha ber bi wê yekê ve diçin ku pêwistiya me bi wan nemîne. Ji mêjve û heya niha jî, jeneratorên elektrîkê yên bazirganî û taybetî xizmeteke baş kirine. Bêguman divê em bigihêjin astekê ku ji xwediyên wan jeneratoran re bêjin' geleki spas ji niha û şunde pêwistiya me bi xizmeta we nîne.

***Hûnê kengî bighijin wê astê?***

Di wê derbarê de me lêkolîn kiriye û li gor programa me, divê em bi du qonaxan jeneratorên taybetî bidin aliyekê. Di serî de divê em jeneratoran ji nav bajarên sereke yên weke Hewlêr, Silêmanî û Duhokê rakin. Qonaxa duyem li qeza, navçe û gundan. Ez di wê baweriyê de me dema ku li dawiya vê salê, yekeya sêyem û çarem a stasyona elektrîka Çemçemalê bikevin kar, emê bighijin wê qonaxa ku jeneratoran ji nav bajarên mezin rakin.

## Şêwirmendê Asayişa Aboriya Herema Kurdistanê, Dr. Bêwar Xenisî:

# Nabe şîrketên biyanî li sirên netewî zanibin

**Ebdilla Nihêlî**

**Duhok (Rûdaw)** - Vekoler û Pisporê Warê Neftê û Asayişa Aborî, Dr. Bêwar Xenisî diyarkir ku wî Hikumeta Herema Kurdistanê haydar kiriye ku nabe şîrketên biyanî bi kêfa xwe li Kurdistanê kar bikin û heya niha gaza Kurdistanê tê sotin. Xenisî di hevpeyvînekê de digel Rûdawê çendin babetên girêdayî neft û samanên siruştî hatin gotûbêjkirin.



***Li kijan deverên Îraqê neft heye?***

Îraq bi xwe li ser dû bingehan hatiye dabeşkirin, başûr û bakûr. Lê pirsgirêka Îraqê ew bû ku heya 2003an hemû hikumetên deshelatdarên wî welatî, nefta Îraqê ji bo armancên xwe bikaranîn e û tî caran ew neft ji bo berjewendiya hawlatiyên Îraqê nehatiye bikaranîn. Herdem nefta Îraqê ji Îraqê re pirsgirêk bû. Çunkî 73 kombirên neftê li Îraqê hene, 23 ji wan dikevin ser sinorên welatên ciranên Îraqê. Di dema heştê salên borî de, bi sedema neftê, mezintirîn pirsgirêk û nexweşî bi serê Îraqê hatin. Lê piştî sala 2003an ku destûr ji Îraqê re hat danîn, bêtiriya wan pirgirêkan hatin çareserkirin. Kombirên Neftê li Kurdistanê gelek gelek in, ji bo mînak li Parêzgeha Duhokê 23 Kombirên Neftê hene, li Hewlêrê ji 21 Kombîr hene. Li Silêmaniyê ez ne geriyame, lê li wir jî bi qasî Hewlêrê kombîrên neftê hene. Wate tenê li Duhok, Hewlêr û Şengalê 50 kombirên neftê hene.

***Çi giringiya pejirandina yasaya Neft û Gazê, ji Kurdistanê re heye?***

Gelek giringî ji Herema Kurdistanê re heye, Civata Birêvebirina Neftê ku wê li Bexdayê bê damezrandin, wê nûnerên Kurdan jî tê de bin, Her wiha wê baweriyeke mezin ji şîrketên biyanî re jî dirust bibe û ewê bi rêjeyeke baştir bên Kurdistanê. Çunkî heya yasaya viberhênanê û yasaya neftê li Kurdistanê nehat danîn, kompaniye ne dihatin Kurdistanê. Loma niha şîrketên biyanî yên neftê dixwazin bên Kurdistanê, çunkî rewşa Kurdistanê başe û yasayên wê jî hene.

***Di navbera nefta Kurdistanê û ya Îraqê de, çi cudahî heye?***

Cûr û pêkhateya nefta Kurdistanê ji ya Îraqê geleki baştir e, ji bo firotinê ji buhayê her bermîleke nefta Herema Kurdistanê ji 11-15 Dolaran ji nefta Îraqê bilindtir e. Her wiha rêjeya Gaza wê jî baştir e. Çunkî nefta Herema Kurdistanê ku li Zaxo û Teqteq tê berhamanîn jî cûrê nefta xav a sivik e. Lê ji bo firotina neftê, Hikumeta Îraqê gelek pisrgirêkan ji Kurdistanê re dirust dike, ew berdewam pirsgirêkan ji wan kompaniyeyan re dirust dikin ku hatine Kurdistanê karbikin, ew weha hizir dikin ku Kurdistan parçeyeke biyaniye ji Îraqê.

***Gelo girêbestên nefta Kurdistanê di yasayî ne?***

Eger ku girêbestên nefta Kurdistanê yasayî nebin, wate hemû girêbestên Îraqê jî ne yasayî ne. Çunkî di destûra Îraqê de hatiye ku her karê diwarê neftê de were kirin, divê pirsa nûnerên parêzgehan bê kirin. Lê ya ku niha di saziyên neftî yên Îraqê tê kirin, ji ya hikumeta Baas xerabtir e, çunkî bêy pirskirina nûnerên Kurdistanê ew hemû kar kirin e. Encamdayîna serjimêriya Îraqê baştirin delîve bû ji bo zêdekirina pareyê Kurdistanê ji dahatiyê neftê.

***Li meha hezîranê de nefta Kurdistanê bi fermî ji derve re hat şandin, giringiya wê yekê ji Kurdistanê re çi bû?***

Nehezên Kurdan propaganda li dijî wan dikirin, bi şandina neftê devê wan hat girtin. Kurdan ji nehezan re diyarkir ku ew bi derxistina neftê ve mandî bûn û paşî ew neft da destê Ereban û ji wan re gotin, hûn çawa bifiroşin bifiroşin. Kurdan karî beşeke pirsgirêka dahatiyê Îraqê çareserbikin, çunkî saziyên nefta Îraqê ragihandibûn ku pêwistiya Îraqê bi şandina 250 hezar bermîlên zêde yên neftê heye. Kurdistan karî 100 hezar bermîlan bişîne û beşeke wê pirsgirêkê çareserbike ku ji sedî 95 ji dahatiyê Îraqê li ser firotina neftê ye.

***Dibêjin niha di kerta neftê de li Îraqê gelek gendelî heye, bandora wê li ser nefta Kurdistanê çiye?***

Ji aliyê saziyên rêvebirina neftê li Bexda, her roj 250 hezar bermîlên nefta Îraqê wenda dibin. Ev hemû ji milkê hejar û destkurtên Kurdistan û Îraqê ye, tê xwarin. Berjewendiya me Kurdan di wê yekê de bû ku em neftê neşînin derve. Eger em li gor rêjeya 17% ya Herema Kurdistanê bipivin, ji 250 hezar bermîlên ku her roj wenda dibin 51 hezar bermîl beşa xelkê Kurdistanê ne. Loma gelek giringe ku Hikumeta Herema Kurdistanê giringiyeke zêdetir bi fayîla neftê bide û hewil bide bi zûtirîn dem yasaya neft û gaza Îraqê derkeve ji bo ku ev gendelî nemîn e. Ji bo nemana gendeliyê, divê yasa derkevin û ciyê xwe bikin da ku demokrasî bikeve di Îraqê de.

***Şandina nefta Îraqê bi vê rêjeyê çi metirsî li ser nefta hilgirtî ya Îraqê heye?***

Piştî Siudiyê, niha Îraq welatê duyemîne ji aliyê hebûna nefta yedek. Niha Îraqê 112 milyar bermîlên nefta yedek hene, lê zêdekirina firotina neftê nabe çareserî. Çunkî bi gorî lêkolînan heya 40 salên din neft li hemû cîhanê namîne û welatê dawiyê ku neft lê namîne, Îraq e. Li gelek welatên ku neft difirotin, niha nefta wan qediyaye û ew dikirrin. Vêca zêdekirina firotina neftê nabe çareserî, Pêwîst e yasa û dadperwerî hebe. Em weke Kurd divê em nehêlin deshelata Îraqê bikeve di destê partiyekê de, Pêwist e Îraq giringiyê bide jêrxaneya xwe ya aborî.

***Şîrketên biyanî ku li Kurdistanê kar dikin, Hikumeta Kurdistanê weke pêwist çavdêriya wan kiriye?***

Nexêr.. çunkî bêtirî 25 şîrketên biyanî li Kurdistanê kardikin, lê çavdêrikirina karên wan ne di asta pêwist de ye, Hikumeta Herema Kurdistanê xemsarî kiriye. Çunkî nabe ew rêke bide wan kompaniyeyan her karê ew bixwazin bikin. Li ser zêdegaviyên wan kompaniyeyan, min çendin caran Hikumeta Kurdistanê haydar kiriye, lê bê sûd bû. Her wiha gaza Kurdistanê ji bê ku sûd jê were ditin, ew tê sotin. Her wiha gaza Xaneqînê her tê sotin. Nabe em rê bidin ko şirket bê sûd gaza Kurdistanê bisojînin. Pêwist e em saziyên neftê li Kurdistanê bêtir organîze bikin, nabe ew şîrket hemû tiştên Kurdistanê bizanin û her tişta ew bixwazin wê bikin. Hin tişt hene asayîşa netewîne, nabe ew şîrket bizanin.

## Prof. Wayne White:

# Parlamenê Kurdistanê wê çalaktir bibe

**Hawar Evdilrezaq**

**Hewlêr (Rûdaw)** - Pisporê Amerikî yê siyaseta Rojhilata Navîn Prof. Wayne White di hevpeyvînekî li gel Rûdawê de ragehand ku parlamena dahatû yê Herêma Kurdistanê wê çalaktir dibe. Wayne White ku ji 2000-2005'an Cîgirê Serokê Ofîsa Lêkolîn û Zaniyariyên Rojhilata Navîn li Wezareta Derve ya Amerika bû, di derbarê destnişankirina Berhem Salih bo erka serokweziriyê ji wiha ragehand: "Berhem Salih nas dikim û di demên navbera şerê yekem ê Kendavê û Şerê Îraqê 2003'an de me gelek caran gotûbêj li gel hevdu kiriye. Berhem yek ji wan kesên herî zîrek yên ku wan nas dikim û dikare wek serokwezîr kareki baş bike."


Hebûna opozisyonê û dengê sêyem hêviya destpêkeke geşbûn geş dike

White di bersiva pirsiyara 'gelo çûna Lista Goran bo parlamenê tu cudahiyê dixe navbera parlamenê niha û yê berê de, wiha dibêje: "Bê guman Parlamenê Kurdistanê zindîtir dibe jiber ji dema borî zêdetir alternatîv û nerînên cuda tên bihîstin lê nayê zanîn parlamenê niha jî ê berê bi berhemtir dibe yan na. Lista Goran ku postê hikûmî wernegire biryareke rast û di cihê xwe de ye yan na, lê tiştê eşkere û diyar e ku dirustbûna opozisyonê û dengê sêyem hêviya destpêkeke geşbûn li Herêma Kurdistanê geş dike."

Di derheqê peywendiyên niha yên Rêvebiriya Obama û Hikûmeta Herêma Kurdistanê de White dibêje Washingtonê, Hikûmeta Kurdistanê ber bi lihevkirinê dehif bide: "Divê xelkê Kurdistanê bizanin ku Washington berê xwe dide wêneyê mezin yanî peywendiyên wê li gel hemû Îraqiyan baş bin, ne tenê li gel Kurdan. Herwiha ligel hevpeymanê Amerika yê NATO Tirkiyê jî. Pêwist e Washington biryareke dijwar bide, lê hêvidar im Amerika dirûşma lihevkirinê li dibe ku Hikûmeta Îraqî li Bexda jî dehif bide bo eynî karî bike û nakokiyên xwe li gel Bakurê Îraqê bikar neyîne bo piştivanîkirina piraniya Ereb, herwiha pêwist e Bexda berpirsyariyeke mezin nîşan bide da ku di pêşerojê de pirsgirêk dernekevin."

Herwiha li gor Prof. Wayne ku derheqê rewşa navxwe ya Tirkiyê xwedî agahiyên baş e, bahsa başbûna peywendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistan û Enqere dike: "Bi baweriya min peywendiyên navbera Tirkiyê û Hikûmeta Herêma Kurdistanê ber bi başiyê ve diçin. Ji herdû aliyan re hatiye eşkerekirin ku siyasetên girjî û rûbirûbûnê yên rabirdû bê sûde bûn. Hinek guherînên ku ji aliyê Tirkiyê ve hatine kirin dilxweşker in û ji dema dewleta modern a Tirkiye hatiye damezrandin tiştên bi vî awayî nehatine holê. Lê divê Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî bi ciddî berê xwe bide van peywendiyan û çi ji destê wê bê bo domandina wan, cibicih bike."

# "Dadgeh li dijî me bêhiqûq û siyasî ye"

**Köln (Rûdaw)** – Li Tirkiyê kêşeya derxistina parlamenterên DTP'ê ya ber dadgehê didome. Dadgeha Bilind a Enqerê dixwaze çend parlamenteran bi tawanbariyên siyasî darezîne û parlamentên Kurd ji beşdarê banga dadgehê nakin û tevlî dadgehê nabin. Ji ber ku parlamenterên DTP'ê guh nadin biryara dadgehê hefta borî biryara bi zorê anîna wan ya dadgehê hat derxistin. Parlamenterê Şirnexê Hasip Kaplan ji Rûdawê re ragihand ku wê parlamento ev pirsgirêkê bi xwe çaraser bike û bûyera sala 1994'an ya dijî parlamenterên Kurd pêkhatibû, careke din dûbare nebe. Kaplan biryara dadgehê wek biryareke siyasî û neheq binivakir û wiha axifî: "Di rojên nêzik de wê parlamento bicive û ji vê pirsgirêkê re çareserî bibîne. Ne mimkun e ku hevalên me bi zorê bibin dadgehê. Eger wekhevî hebe divê ji bo hemû parlamenteran hebe. Heta niha li dijî parlamentrerên ku tawanên rûreş kirine dozekî ji nehatiye vekirin, lê li dijî hevalên me gelek biryarên bêhiqûqî hene."



Kaplan got ew hewldanên AKP'ê erênî dibînin: "Rayedarên Wezareta Edaletê bi hevalên me Sırrı Sakik re axifîn. Em hêvî dikin ku pirsgirêk berî ku mezin bibe, çareserbibe."



Weki li gelek welatan, rewşa qereçiyan li Îraqê jî ne baş e

## Qereçiyên Îraqê:

# Dest davêjin jinên me

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** - Piştî rûxana Rejîma Saddam di sala 2003'an de gelek kes daketin kolanan û bi hêviya rojên xweştir govend girtin. Şeş sal derbas bûn û gelek tişt guherîn lê ne tenê ber bi hêviyên sala 2003'an: Weki Qereçiyên Îraqê ku xweziya xwe bi demên berê dikin.

Gundê Qerec 50 km dûrî bajarê Diwaniye yê Başûrê Îraqê ye. Gund di nav çolê de ye û xelkê gund bi mebesta xweparastina ji êriş û komên çekdar û grubên radîkal, dora gundên xwe bi girên axê pêçandine. Diwarên xaniyên Qerec bi heriyê hatine çêkirin û derdora wan ji bi qamîşan hatiye pêçan, zarokên wan reş û rût in, dibistan û navendên tendurustiyê tune û bê ava paqij a vexwarinê ne. Rûniştvanên gund ku ji sala 1973'an ve li vir niştecih in, dibêjin herçiqas bi fermana Saddam nasname Îraqê dane wan jî, lê vê yekê ji nekariye wan ji cudakarî û asîmîlekirinê biparêze. Bêyî razîbûna polîsên Diwaniye rê ji nadin rojnamegeran ku herin nav gund.

Rîna Ubêd yek ji daniştvanê gund e û wiha bahsa jiyana xelkê gund dike: "Malbata me 7 kes in û em ji ber çendîn pirsgirêkan dinalin: Ya herî dijwar jî tunebûna elektrîkê ye ku ji sala 2003'an ve hatiye qutkirin. Elektrîka jeneratorên biçûk jî tenê li cem malbatên dewlemend heye. Nebûna ava paqij a vexwarinê wiha kiriye ku em ji neçarî ava pîs û bêhnpêketî ji gomavên gund vexwin. Carna jî dema hinek pere dikevin destê me, em ji tankêran avê dikirin. Nirxê her bermîlekê ji digihijê 10 hezar dînar / 8 dolar."

Rîna dibêje ku ew êdî nema dikarin vê rewşê tehemûl bikin: "Em ji dil hawar dikin, bê ku kes bersîvekê bide me. Gelo dibe ku mirov ewqas sal bê av û elektrîk bijî? Ew nexweşiyên ku bi sedema bê avî û elektrîkê bi me ketine û belav bûne, zêdetir bandor li zarokan kiriye û gelek zarokên me nexweş ketine. Ya balkêş jî ew e, heta niha li navçeyê navendeki tendurûstiyê nehatiye çêkirin."

Di derbarê rewşa jiyan û awayê debarkirinê de ji axayê gund Şêx Nazim Nahî Ferhan van agahiyan dide: "Di temenê xwe yê 72 salan de ev cara yekem e ku rê nadin ku em pişeyê xwe bikin ku jî bav û kalan ji me re maye. Herwiha tenê yek malbata Qereç jî ku di vî cihê girtî de meaşê Tora Parastina Civakî wergirtiye jî tune. Di dawiyê de em neçar bûn pîr û zarokên xwe jî bo parsê bişînin bazar û taxên Diwaniye, jî bo ku em bikaribin jiyana xwe bidomînin. Ew destdirêjiya jinên me dikin, rûmeta me binpê dikin, em avêtine dojehekê û neçar hiştine. Em êdî nikarin rêyekê bibînin, ji bo ku ji vir derkevin. Lê hîç rêyek tune ku derfetê bide me, ji xeynî xewn û xeyalan. Li gel hemû nexweşî û tehliyan jî divê em tehemûl bikin."

Li gel hişkbûn, nebûna xizmetguzarî û bêkariyê û rewşa dijwar ji Qereçan berê xwe nedan aliyê terorê û hîç karek nekirin ku bandorê li aramî û ewlekariya navçeyê bike. Di vê derbarê de Serokê Encûmenê Şaredariya Diwaniye Hemîd Metrûd wiha diaxife: "Di taritirin rewş û demê de me qet pirsgirêkek çênekir, me çendîn şehîd ji bi sedema teror û tundûtujiyê dane, lê qet rojekê em ne fikirin berê xwe bidin terorê. Qereç xwezî bi demên Saddam tînin. Rast e wê demê jî hejar bûn lê wek Îraqiyên din mafê me jî hebû."

Seroka Encûmenê Mafê Mirovan yê Parêzgehê Wîdad Hatem jî wiha bahsa rewşê dike: "Tiştê ku rewşa gundiyan aloztir dike ew e ku ew Qereç in û civak jî bi çavekî dijwar û nebaş berê xwe didine wan. Sê tankên ava vexwarinê ji gund re hatine dabînkirin û li cihên cuda cuda hatine danîn. Şaredariyê jî bi mebesta hilgirtina zibil, paqijkirina rê û caddeyan hinek alet şandine. Emê bi hevkariya saziyên sivîl hewlbidin ku karxaneyek li gund bê vekirin. Em hêvîdar in tiştekî pêşkêşî wan bikin ku di xizmeta wan de be, bi taybetî jî ber ku wan soz daye ku sema û laşfiroşiyê nekin. Di wî warî de jî lêkolîn hatine kirin û derketiye ku wan dest ji sema û laşfiroşiyê berdane, ev jî destpêkeke baş e."

## Li Çola Erebistanê 'Zanîngeha pêşerojê' ya bi 12,5 milyar Dolaran

# Jin û mêr êdî dikarin li gel hevûdû rûnîn

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** - Dawiya meha borî li Erebistana Siûdî yek ji bipêşketitirîn zanîngehên cîhanê deriyên xwe vekir. Pisporên ji her derê cîhanê û ji beşên cuda wê li vê zanîngehê li ser çareserkirina pirsgirêkên pêşerojê bixebitin. Ji bilî derfetên nenaskirî di azadiya lêkolîn û karkirinê de, li vê zanîngehê çendîn azadiyên dîn jî hene bû ji derveyî kampûsa zanîngehê hêjî xeyalin.

Zanîngeha Melîk Abdullah ji bo Zanistê û Teknolojiyê - King Abdullah University of Science and Technology (KAUST) - ku navê xwe ji melîkê wî welatî Abdullah girtiye û bi bihayê 12,5 milyar Dolar li ser 36 kilometre çarkoşe hatiye avakirin, tena zanîngehe li Erebistana Siûdî ku jin û mêr dikarin bi hevrê lê bixwînin, bêyî ku di dersan de ji hev bên qutkirin. Zanîngeha KAUST yek ji xewnên Melîkê Erebistana Siûdî Abdullah bû û bi vê zanîngehê Abdullah dixwaze welatê xwe bi carekî derbasî nexşeya cîhanî ya welatên zanistê bike. Zanîngeha KAUST ku zanîngehên wekî Massachusetts Institute of Technology - MIT ji xwe re wekî nimûne digire, dixwaze bibe yek ji giravên zanisten yên sereke li cîhanê.

Rêvebiriya zanîngehê hewl dide ku baştirîn pisporên cîhanê – heta niha 71 in, lê armanc 225 in – bîne zanîngeha li Çola Erebistanê, 80 kilometre li başûrê bajarê Jedda û wan di çendîn beşên zanistê de ji bo pêşeroja Erebistana Siûdî, pêşeroja piştî hilberîna neftê, bide lêkolandin û xebitandin. Ji ber ku Erebistana Siûdî ji niha ve li alternatîfên stûna bingehîn ya aborî xwe neftê digere, lêkolînên li ser enerjiyên nûjen beşeki sereke ne di xebatên zanîngehê de.

Ji 400 xwendekarên ku di vê demsala xwendinê – armanca demdirêj 2 hezar e – de xwe li zanîngehê tomar kirine, tenê ji sedî 15'ên wan ji Erebistan Siûdî ne, yên din ji Çîn, Meksîka, DYA'yê û gelek welatên din hatine. Heta niha ciwanê Siûdî ji bo xwendina xwe diçûn zanîngehên li derveyî welêt û pirani wan piştî xwendina xwe li Erebistana Siûdî venedigeriyan. Lê niha hikûmet ne tenê dixwazê ku ew ciwan li welêt bimînin, ew bi zanîngehên serekê yên cîhanê, yên weki Harward û Oxfordê ji ketiya rikberiya zirektirin pispor û xwendekarên cîhanê. Ji bo ku pispor û xwendekar berê xwe bidin Çola Erebistanê, hikûmeta wî welatî sofreyeke tijî û dewlemend ji bo wan raxistiye û imkanên ku li zanîngehên Ewrûpa û li seranserê cîhanê tenê xeyalî ne, ji wan re amade kiriye: heqdesten gelekî baş û moderntirîn laborûtuarên cîhanê. Ji bo ku zanîngeh bibe navnîşanekî navwetewî ya zanistê, rêveberiya zanîngehê Serokê Zanîngeha Singapûrê û derçûlê Harwardê Choon Fong Shih kir serokê Zanîngeha KAUST'ê

Bi vê zanîngehê melîkê wî welatî Abdullah pêşî li şoreşeke dîn ji li welatê xwe vedike. KAUST heta niha tena zanîngehe li Erebistana Siûdî ku keç û xort dikarin di dersan de li kêleka hev rûnin û bixwînin. Ji bilî wê yekê, jin dikarin di kampûsa zanîngehê de bêyî çarşev bigerin û heta dikarin seyare ji bajon. Li derveyî zanîngehê ev hemî tişt heta niha jî qedexe ne.

Di van salên borî de rikberiyek avakirina navendên zanisti di navbera welatên Nîvgirava Erebî de dest pê kiriye û rexnegirên ji welatên Ereb dibêjin ku zanîngeha KAUST jî yek ji wan projeyên bêserûbinî yê Siûdiyan e û ewê di dawiyê de wekî gelek pirojeyên din yên bi vî rengî, zêde tiştekî neguherîne.




Bi nûjentirîn amûrên teknolojiyê xwendekar û mamosteyên zanîngeha KAUST wê lêbikolin û bixebitin

# Kilîma diguhure, jiyan bihatir dibe

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** - Guherîna avhewayê wê di dehsalên pêş de xwarinê kêmtir bike û nirxê berhemên çandiniyê di bazara cîhanê de hildê astên nediti.

Di lêkolîneke xwe de Enstîtuya Navnetewî ya Lêkolînên Xwarinê / International Food Policy Research Institute (IFPRI) balê dikşînê ser wê yekê ku nirxê genim wê heta sala 2050'an ji sedî 170 heta ji sedî 194 girantir bibe. Di wê raportê de hatiye gotin ku herçiqas li hinek herêmên cîhanê hilberîna berhemên çandiniyê zêde jî dibe, "wê guherîna avhewayê li sektora çandiniyê bandoreke neyînî bike û misogeriya cîhanê bi xwarina têxe jêr metirsiyê."

Herçiqas kiştûkalî ji bo ji sedî 20'ê germbûna cîhanê berpirsyar e, lê di nava vê yekê de xwedikirina heywanan roleke sereke dilîze. Eger sektora çandiniyê bi hewldanên nûjen û alîkariya cotkarên biçûk neyê piştgirî kirin, ewê bibe yek ji qurbanên sereke yên germbûna cîhanê. Herî zêde jî wê welatên li başûrê Çola Sahara û yên li Başûrê Asyayê para xwe ji vê guherînê bigrin.



Guherîna kilîmayê wê di pêşerojê de hejmara felekatên xwezayî zêdetir bike

Ji aliyekî ve wê xwarin ji ber kêmbûna avê, zêdebikaranîna erdên çandiniyê û çandina riwekên enerjiyê heta sala 2050'an kêmtir bibe, lê ji bilî wê jî we hejmara mirovan bighijê 9 milyaran. Bilindbûna pileyên germ û guherîna rewşa hewayê yên ekstrêm wê vê yekê hîn girantir bikin. Eger li gor IFPRI li dijî van guherînan tiştek neyê kirin, wê li welatên kêmpêşketî di sektora genim û birinc de hilberîn ji sedî 30 û 15 dakevê. Weki nimûne wê li Başûrê Asyayê hilberîna birinc ji sedî 14, ya genim ji sedî 49 û ya garis ji ji sedî 19 dakeve.

Ev gûherîn wê bi awayekî berbiçav xwe di buhayê berhemên cotkariyê de bide xuyakirin. Guherîna avhewayê ji wê buhayê birinc ku wê heta sala 2050'î ji sedî 50 girantir bibê, ji sedî 37'ên din ji hildê jor. Ji bo garis ji ji sedî 55 û ji bo fasûlyê soya ji ji sedî 14 bilindbûn wê çê bibe. Lê eger salane 7 milyar Dolar ji bo bipêşxistina înfrastrûktûra çandiniyê û teknolojiyên nû bên mesrefkirin, wê bandora guherîna avhewayê bê kêmkirin. Weki gavên mînak enstituya navborî bahsa çêkirina rêyên asfaltê li Afrîkayê, lêkolînên di warê çandiniyê li Amerîkaya Latîn û baştir bikaranînan avê li Asyayê, pêşniyaz dike.

# Çînê çav berda nefta Afrîkayê

**Serwisa Cîhanê (Rûdaw)** - Di gera xwe ya ji bo çavkaniyên nû yên enerjiyê, Çîn berê xwe didê Afrîkayê û dixwazê bandora xwe li vê parzeminê berfirehtir bike. Bi vê yekê Çîn dikevê rikberiya bi şirketen nefte yên rojavayî yên weki Total, Shell, Chevron û Exxon Mobil, ku peymanên çendên wan yên hilberîna neftê bi dawî tên.

Şirketa neftê ya Çînî CNOOC dixwazê bi berfirehî têkevê bazara nefta Nîjeryayê. Weki ku tê bahskirin bihayê kontrakta ku heta niha mezintirîn hewldana Pêkîngê ye ji bo kirîna neftê ji derveyî welat, digihîje çendîn milyar Dolarên Amerîkî. Di nîviseke ku di 13'ê tabaxê de ji buroya Serokê Nîjeryayê Umaru Yar'Adua ji bo nûnertiya şirketa CNOOC hatiye şandin, nirxê wê kontraktê nayê bilêvkirin, lê wekî ku rojnama Financial Times radigihîne, ji hûragahiyan dixuyê ku nirxê wê kontraktê dordora 30 milyar Dolar e. Li aliyê din pisporên ji sektora neftê nirxê vê kontraktê li derdora 50 milyar Dolar dibînin.

CNOOC dixwaze bi giştî şeş milyar barel (barelek 159 lître ne) neft ji Nîjeryayê bikire, ku tê wateya yek ji şêşên çavkaniyên neftê yên ku li wî welatî hatine kifşkirin. Nîjerya yek ji mezintirîn welatê Afrîka Navîn e ku neftê hildiberîne û di heman demê de yek ji giringtirîn welat e ku neftê dişînê Dewletên Yekgirtî yên Amerîkayê.

Lê şirketa CNOOC ne şirketa yekê û tena ye ku dixwaze li Nîjeryayê kar bike û gelêkên wan 23 birên neftê ku şirketa navborî li ser wan bi Hikûmeta Nîjeryayê ketiye nava danûstandinan, an bi temamî anjî beşekê wan di jêr kontrola şirketên rojavayî deye, anjî şirketên rojavayî niha li ser wan dixebitin. Heta niha ji Hikûmeta Nîjeryayê ti daxuyanî di derbarê awayê karkirina CNOOC ne daye û ne diyare bê CNOOC wê bi çi awayî li Nîjeryayê bixebitê. Li ser îhtimalên ku wê şirketên rojavayî bên mecbûr kirin ku beşekî ji bîrên xwe bidin şirketa Çînî, tu agahî tune.

Ji ber bipêşketina aboriya Çînê ya bêsînor, hikûmet û şirketên wî welatî derketine nêçîra çavkaniyên enerjiyê li seranserê cîhanê û bi vê yekê di salên borî de nirxê neftê û gelek çavkaniyên din yên xwezayî gihiştin astên nediti. Çîn nîvê hewcedariyên xwe yên neftê ji derveyî welat distîne û ji bo vê yekê bi welaten wekî Venezûela û Myanmarê re peymanên li ser enerjiyê mohr kirine.



Çîn li seransere cîhanê li çavkaniyên nû yên enerjiyê digere




*Dîmenek ji navenda bajarê Antwerpen*

## Antwerpen:
# Geryanek li bajarê almasan

**Hêmin Ebdilla**

**Antwerpen (Rûdaw)** - Tevî ku Hikumeta Belçîkî Brukselê weke paytexta xwe ya siyasî hilbijartiye jî di warê praktîkê de bajarê Antwerpen weke mezintirîn û ciwantirîn bajarê Belçîkayê ye. Çalakiyên gelê Flamîaxêf hemû li Antwerpenê pêk tên.

Dema ku rojnamevanekî kamere di destê de, ji stasyona Antwerpen derdikeve, nizane cara yekemîn wêneyê çi bikşîne. Li hember meydaneke mezin ya tije xelkê hemereng û heme temen tê dîtin. Yek tê û yek diçe, yekî din jî rawestaye û destê xwe ji yekî din re bilind dike ku bi pêkenîn ve ji dûr ber bi wî ve diçe. Li destê xwe yê çepê tu kolaneke dûr û dirêj dibînî ku bi tabloyên restaurantên heme ziman û neteweyan hatine xemlandin. Çavê te ji dûr ve bi restauranteke Lubnanî dike ku li tenişt yekeke Arjantînî û yeka Meksîkî ku tije mêvan in. Vêca ji ber ku rojnamevan jî mirovên asayîne, ev dîmen te birçî dike û tu berê xwe didî restauranteke biçûk ku kes têde nîne û xwarineke lezgîn û erzan daxwazdikî.

Dema ku te xwarin xwar, tu wê berê xwe bidî aliyê pişt îstasyona trênê. Li wir dû tişt bala te dikşînin, yek ji wan ew hemû dukanên almas / dîamond firoşan ku li kêleka hevin, dûyemîn jî hunera avakirinê ya Flamiyan. Ew dukan filma (Diamonda bi xwîn) tîne bîra te ku di wê filmê de tê nîşandayîn ka çawa li Afrîkayê almas jiyana hezaran mirovên birçî têxe metirsiyê. Lê li vir mirovekî rojavayî ji bo xwe mezinkirinê, wê almasê bi xwe ve dike. Bajarê Antwerpen yekemîn stasyone ku Diamond a bi xwîn, ji wê ve li seranserî dinyayê tê belavkirin. Her weha li vir bankek jî heye bi navê Banka Diamond ê.

Hinekî wêvetir taxeke navdar a Cihûyan heye. Dema ku tu bi kamereya destê xwe wêneya dîwarekî nexşandî dikşînî, çavê te bi zilamekî olî yê Cihû dikeve ku li ser motorekê rûniştiye û digel yekî din diaxive. Vêca zooma kamereya te bi wan dikeve û tu çirkeyekê lê dixe.

Li taxa Cihûyan pirtûkên kevin, xwarinên bi tam û giran, kiçên ji ser heya piyan pêçayî û çav aloz bala te dikşînin. Zilamekî bi rih destê kurê xwe girtiye, ji dûrve tê û dema nêzîk dibe şêweyê rêveçûna xwe diguherîne, mirov hest dike ew tirsiya ye. Tu nikarî wê yekê fêm bikî ka boçî piştî derbasbûna bêtirî şêst salan bi ser bûyera Holocaust ê, lê niha jî cuhû li Ewrûpa kulavekî taybetî dikin serê xwe ji bo ku kulavê xwe yê olî yê bi navê "Kêpill" veşêrin. Tişta ku tu wê li vir bizane ewe ku cuhû li vir ewqasî ditirsin; baweriyê bi xwe jî nakin.

Hêdî hêdî bi peyase tu diçiye nava bajar. Li wir tu wê peykerekî mezin bibînî. Zilamekî pîr hewil dide zanyariyan ji te re pêşkêş bike; "Ev peykera rizgarkerê Flamiyan e." Tu jî wê serê xwe bihejînî û wê ji bîra te biçe ku bipirsî: navê wî çiye? Çend pêngavan wêvetir wê çavê te bi deriyekî mezin û zêrîn bikeve, li serê wî hatiye nivîsandin salona helkeftên bajarî. Tu wê di derî re biçiye jûr û her di serî de wê çavên te zîq bimînin ji tişta tu dibînî. Tişta ku tu wê bibînî ne saloneke sadeye. Lê bazareke veşartî ya şahînşahiye. Li wir girantirîn dukanên cilûberg û pêlavan diyarin ku nexşekariyeke gelekî hûrbîn ji dîwarên wan re hatiye kirin û rengekêî wan yê zêrîn heye. Li navenda salonê de, kafêyeke spî heye. Xizmetkarên wê kafeyê bi şêwazekî şirîn ê Flamî bi xêrhatina te dikin û qedeheke şeraba sûr ji te re pêşkêş dikin.

Li hemberî avahiya şaredariyê de, meydaneke mezin heye ku ji wir bêtiriya avahiyên kevnar û mezin ên bajar diyarin. Li wir wê şêweya navkirina tiştan bala te bikşîne. Ji bo mînak kafetiryayek heye ku navê wê "Çavniqandinek"e. Caddeyek heye bi navê "Caddeya bê rasîsim"e. Hinekî ji wê derê wêvetir, tu wê keçeke Çînî bibînî mijûlî kişandina wêneyê qesreke bilinde. Rêzeke restaurantên Îtalî jî li nava bajar hene, dema tu di wir der derbas dibî, xizmetkarên wan rêya te digirin ji bo ku ne tenê bêhna xweş a xwarinên wan ku cadde tije kirine, hilkêşî belkî tiştekî jê bixî. Lê te biryar daye ber bi bendera bajar biçî û daxwaziya wan qebûl nekî.

Antwerpen bendereke mezin heye ku li ser asta aboriya Ewrûpayê de xwedî girîngiyeke mezin e. Tevî wê yekê jî tu wê bibînî ku ji rûyê ciwaniyê jî, ew bender ciyekî taybetî ye. Dema ku tu diçiye nava muzexana paporvanî ya bajar ku dikeve nava kelehekê li ser benderê. Bê ku te ageh ji xwe heye, tu wê hest bikî ku te beşdariya filmeke kevn yê dîrokî de kiriye. Hinekî wêvetir jî tu wê sehneke mezin bibînî ku rêzeke kursiyan lê hatine danîn. Ji dûr ve tu wê kur û keçekê bibînî ku li ser kurisyekê rûniştine û bi destên xwe amajê didin avabûna tavê ku bi tîrêjên xwe hêleke pîvazî li ser deryayê dirust kiriye.

Di vegerê de, tu wê siwarî trêneke kevn û biçûk bibî ku tenê xelkê nava bajar tîne û dibe. Tê de tu wê ji hin rûniştiyan bipirsî ka ew derbarê Kurdan tiştekî dizanin. Bersîva bêtiriyan jî "belê" ye. Ageha wan ji karesata Helebçe heye û yek ji wan dibêje "Ew hovîtî bû." Lê di derbarê biryara hevkariya navbera Kurdistan û Flandern de, ew hemû serên xwe dihejînin û dibêjin; "haya me jê nîne."

Nêzîkî nîv milyon mirov li Antwerpenê dijîn. Ji aliyê hejmara rûniştvanan, mezintirîn bajarê Belçîkaye.

Heta çaxên naverastê, gundekî biçûk bû. Di serdema ronesansê de bûye navendeke girîng a kultur û bazirganiyê.

Xwedî benderekî mezin e û bi wê navdar e ku nirxeke taybetî bi almas / diamondê dide.

Di wî bajarî de, rêjeya jinan ji ya mêran bêtir e.

## Almanya:
# Êdî li dibistanê nimêj serbest e

**Rûdaw (Köln)** – Herçiqas li Almanyayê destûra bingehîn bêalîbûna dewletê li hemberî hemwelatiyên xwe di hemû waran de ferz jî dike, dadgeheke Berlînê serlêdana xwendekarekî Musulman ji bo nimêja li dibistanê pejirand. Bi vê biryarê dadgeha Îdarî ya Berlînê Verwaltungsgericht Berlin biryarekî adara 2008'an erê kir.

Xwendekarê Lîseyê Yunus M. yê 16 salî bi sedema ku di zivistanê de roj kin in û ew wek bawermendekî Musulman mecbûre nimêja xwe li dibistanê bike, serî li dadgehê dabû û xwestibû ku dibistana wî destûrê wê yekê bide ku ew di navbera dersan de nimêja xwe bike. tibû ku li Berlînê dersên olî li dibistanan nayên dayîn û divê şagirtên ne Musulman li hemberî wêneyên nedîtî li korîdorên dibistanan werin parastin.

Dozgerê di biryara nivîskî de gotiye ku biryara dadgehê nayê wê wateyê ku dibistan êdî mecbûre ji xwendekarê xwe re odeyeke ji bo nimêjê terxan bike, lê ew yek jî nabe ku rêvebiriya dibistanê li pêş bicîhanîna şertên olî bibe asteng. Dozger herwiha got ku xwendakarê dozdar bi awayekî pêbawer ji wî re rave kiriye ku pêwistiya wî bi destûreke bi vî rengî heye û wekî din jî ew wekî dadgeh di vê helwesta xwendekar de tiştekî ku bibe sedema aloziya li di-



*Destûra nimêjê li dibistanên Almanya hat dayîn û niha tê çaverekirin ku dersên olî jî werin dayîn*

Sedema çûyîna pêş dadgehê ew bû ku xwendekarê navborî û çend hevalên xwe dixwestin li korîdorên dibistana xwe di bêhnvedana dersan de nimêja xwe bikin û evyek ji aliyê rêvebiriya dibistanê hatibû astengkirin. Wekî sedema destûrnedanê jî rêvebiriya dibistanê bêalîbûna dibistanên fermî di nêrînên giştî û olî de nîşan dabû û gobistanê û pirsgirêkan di rojaneya dibistanê de peyda bike, nabîne.

Ji ber esasbûna mijarê Dadgeha Îdarî destûra îtirazê li pêş Dadgeha Îdarî ya Bilind ya Berlin-Brandenburg daye û Rêvebiriya Giştî ya Perwerdê jî ragihand ku ew li ser wê yekê difikirin ku li dijî biryarê derkevin.

## Şahiya Cotmehê:
# 60 hezar hektolître bîra, 500 hezar mirîşkên biraştî



*Li Oktoberfestê bîra xweş e lê biha ye... Qedehekî bîra îsal bi 9 Euroyan hat firotin.*

**Rûdaw (München)** – Şahiya Cotmehê Münchener Oktoberfest, an jî bi devoka herêmî d'Wiesn, ku îsal jî di navbera 19'ê îlon û 4'ê cotmehê hat lidarxistin, yek ji mezintirîn şahiyên gelerî li cîhanê ye û ji sala 1810'an ve tê lidarxistin û salane bi milyonan mêvan berbi Münchenê diherikin.

Li gor agahiyên şaredariya Münchenê, salane derdora 6 milyon kes serdana Şahiya Cotmehê dikin. Di salên dawî de hejmara mêvanên ji derve jî, piranî jî ji Îtalya, DYA, Japan û Awustralya, mezintir dibe. Rekora mêvana bi 7,1 milyon di sala 1985'an de hate danîn û heta niha ew hejmar nehatiye derbas kirin.

Di qada şahiyê ya 31 hektarî ji bo 100 hezar kesî derfetên rûniştinê tên amade kirin û her carê derdora 12 hezar kes di şahiyê de dixebitin, 1600 ji wan jî wekî garson kar dikin. Di Şahiya Cotmehê de derdora 60.000 hektolître bîra û derdora 500.000 mirîşkên biraştî tên firotin û 450 milyon Euro di şahiyê de tên danûstandin. Ji bo vê şahiyê şîrkêtên bîrayê yên wî bajarî bîrayek taybet amade dikin ku têde ji sedî 6-7 eraq heye û pardaqa bîrayê ya yeklîtreyî bi 9 Euro ye.

Vexwaria zêde ya vexwarinên alkolîk di salên dawî de bûye pirsgirêkek mezin û ji ber vê yekê hinek tedbîr ji aliyê organîzatorên şahiyê hatin standin. Ji bo pêşîlêgirtina li vexwarina zêdê û serxoşiya ciwanan ji sala 2005'an ve heta saet 18'an li şahiyê tenê mûzîka gelerî tê lîstin û bilindbûna dengê mûzîkê ji divê ji 85 dB derbas neke. Piştî saet 18'an êdî mûzîka pop û stîlên din jî serbest in.

Bi mînaka Oktoberfestê li tevaya Almanya û li seranserê cîhanê jî li 100 welatan û 3000 bajaran şahiyên gelerî tên li dar xistin. Îsal ji ber tehdîdên Îslamistan ewlekariya li derdora şahiye hate şidandin û hejmara polîsan ji 400 ji bo 700 hatibû zêdekirin. Ji ber van tehdîdan tê çaverêkirin ku îsal hem hejmara mêvanan kêm bûbê û hem jî pereyên ku di şahiyê de hatin danûstandin.

# Almanya êdî ciwan nîne!



**Köln** – Li Almanyayê rêjeya kesên ku temendirêj dibin herku diçe mezintir dibe. Li gor agahiyên saziya îstatistîkan ya Almanyayê Statistisches Bundesamt keçek kû îro ji dayik dibe, 82 sal û 4 mehan dike û lawikek jî dikare li benda 77 salan be.

Îro ji du mêran yek 80 salan derbas dike û ji du jinan yek 85 salan derbas dike. Ji sedî 94'ê jwinan 60 saliyê derbas dikin û rêjeya mêran jî ji sedî 89 e. Li parêzgehên berê yên Almanyayê (rojavayê Almanya) mirov pîrtir dibin. Ferqa di navbera zarokên ku niha li rojhilat û rojavayê Almanyayê ji dayîk dibin, ji bo lawan 1,3 û ji bo keçan 0,3 sal e.

Edîtorê Kovara W'yê
Elîxan Loran

Edîtorê Kovara W :

# Komînîstên Tirkan jî perwerdeya bi kurdî naxwazin

**Evdila Koçer**

Kovara wêjeyî, çandî û hunerî, W' ku heta niha 28 hejmar hatine weşandin 6 saliya xwe pîroz dike. Kovara ku bi du mehan carekî dertê, pêşî bi 11 nivîskaran dest pê kir û ev 16 hejmar e jî Enstîtuya Kurdî ya Amedê derdixe. Yek ji edîtorê Kovara W'yê Elîxan Loran di derbarê weşana kovarê de ji Rûdawê re axivî. Loran da zanîn ku êdî ew bêtir dizanin ku serê wan li ser kîjan balîfê ye, kend û kospên li hemberî kovarê çi ne, “Wek meseleya diz û kurikê malê dibêje ‘min ew berdaye lê ew dev ji min bernade.’ Kurd dev ji me berdin jî em dev jê bernadin.”

Elîxan Loran, li ser armanca kovarê balê dikişîne ser ku di bingeha xwe ya razber û utopîk de ew negihiştine armanca xwe, “Ya rast me armanceke ku wê cîhanê bihejîne neda ber xwe. Ji ber ku kovargerî berhemeke guherîn, pêşketinê ye, wê tu carî mirov negihêje armanca xwe. Wêje, cîhan, ziman, metodên vegotinê, nêzîkbûna li peyvê, kişfkirina kujeke peyvê, stratejiya peyamdayîn û peyamên real û sûblîmînal her û her mobîlîze dibin, diguherin, kevn dibin an jî êdî dibin tiştekî nostaljîk...”

Lê dû re lê zêde dike ku di hinek tiştan de jî gihiştine armancên xwe, “Wekî mînak, gelek kesên ku cara pêşîn helbest yan jî çîrokên ku di kovara Wyê hatine çapkirin xwendine êdî hatine wê radeyê ku dikarin helbest yan jî çîrokan binivîsinin jî. Ji xeynî van tiştan em her hejmar dosyeyek taybet amade dikin, ev jî armanceke me bû û em hê jî pêk tînin. Di hejmara 27'an de me dosyeyek li ser “di wêjeya kurdî ya nûjen de êşa bindestiyê” amade kir. Me bindestî û wêjeya xwe dan ber hev, ev jî armanceke netewî ye...”

Loran li ser pirsa me diyar dike ku dema ku Xwedê teala di ayeta pêşîn de gotiye ”Bixwîne” Kurdan gotiye qey dibêjî ”bi xwîn e”, “Kurdî nayê xwendin, dilkêşiyeka wê tune, ne di rewacê de ye. Ev tiştên hanê astengî û problemên kovarê jî ne. Astengiyên sereke belavkirin, xwendin û hesûdiya kesan e. Dibêjin ‘nivîsa filankes hebe’ ez wê hejmarê naxwînim. Bi mîza tajiyekî gola Wanê heram nabe, îcar wê çawa kesek karibe kovarekê biherimîne? Tevî ku em li dijî herimandin, edemkirinê ne. Nivîsa filan keso/ê qels be, fermo rexneyên xwe binivîse...”

Em ji Elîxan Loran daxwaz dikin ku ji xwendevanên Rûdawê re behsa tîraja kovarê bike, bi gazincan wiha li me vedigerîne, “Tîraja kovarê li gorî demsal û naverok û dosyeyan diguhere. Mesela hejmara ”Di medreyan de wêjeya klasîk ya kurdî” çapa pêşîn qediya û me çapa duyemîn amade kir. Di havînan de tîraj kêm dibe. Firotina kovarê jî nanoziko ye, di hin hejmaran de heqê çapê jî dernakeve. Li saziyeke wekî Eğitim-Senê 5 hezar endamên wê hene 5 kovar nayên firotin, em gazinan nakin. Ji ber ku her kes mîmarê dîwarê xwe ye. Aboneyên me bêtir li Amedê ne lê li bajar û navçeyên din jî hene. Nîvê kovarê li Amedê nîvê din hîna li bajarên din tê firotin...”

Loran bi bîr tîne ku kovar bi destan tê belav kirin û şîrketeke ku xwe bide ber vî karî tune ye, “Yên hene jî guh nadin weşanên kurdî. Jê pê ve mixabin em tenê di nav sînorên tirkiyeyê de dikarin belav bikin. Sînor û burokrasî problem e. Lê em kovarê dişînin bajar û navçeyên sereke yên Bakur. Û em dikarin bibêjin ku kovar hema hema li hemû girtîgehên Bakur jî têne belavkirin. Bi qasî derve em ketine ‘hundir’ jî...”

Li ser pirsa me ya “Rexneyên nivîskar, rewşenbîr û xwendevanên Kurd li ser kovarê çi ne?”, edîtorê Kovara W Loran dibêje ku rexne bêtir li ser naverokê ye, “Lê dema ku nivîskar vê yekê rexne bikin di heman katê de ev tê vê wateyê ew berê xwe rexne dikin. Ji ber ku em nivîskaran ji Marsê yan jî ji Jupîterê transfer nakin. Em û nivîskar em xwe bi xwe ne. Xwendevan jî gazinan dikin dibêjin kovar derengî tê ber destên me yan jî rêkûpêk nayên. Sedema vê jî ew e ku em kovaran bi destan belav dikin. Û xwendevan dibêje hûn tenê nivîsên nivîskarên xwedî pirtûk çap dikin. Ev ne wisa ye. Em li naveroka nivîsê dinihêrin...”

Loran rexneyên tûj li medya û rewşenbîrên Tirk jî digire û dibêje ku heta niha ew bi ber çavên wan neketine, “Ji ber ku kesên me yên wisa tune ne ku di jiyana xwe de nivîseke bi kurdî nenivîsîbin û di kovar û rojnameyên tirkan de bi tirkî dora me avreşandî bikin. Yan jî pismamekî me tune ye çi nûçeyên ku di derbarê me de werine weşandin tavilê wergerînin tirkî. Yan jî sohbeta me ya di nav xwe de jî bibe mijarên gotaran. Ji ber ku em kovareke xwerû bi kurdî ne bivê nevê hebûna me nayê hesabê medya û rewşenbîrên tirk. Çepgirê wan jî, qomînîstên wan jî alîgirê vî tiştî ne ku bila perwerdehî bi kurdî neyê dayîn.

Kovar nebûye mijara wan, a rast ez ne bawer im ku haya wan ji kovara Wyê heye tevî ku ev 6 sal e bi rêkûpêk derdikeve jî...”

Em dixwazin fêr bibin ka kîjan hejmara kovarê zêdetir balê kişandiye, ji me re wiha dibêje, “Herî zêde hejmara ‘di medreseyan de wêjeya kurdî ya klasîk’ hejmara ‘Mehmûd Baksî,’ hejmara yekemîn, hejmara ‘Helîm Yûsiv’ bal kişandiye. Hevpeyvîn û çîrok zêde tên xwendin. Û nivîsên ku kurdiyeke zelal û fesîh hatibin nivîsandin...”

Elîxan Loran pişt re gotinê tîne ser xemsariya nivîskarên Kurd ya li ser kovarê, “Nivîskar piçekî dûrî kovarê disekinin, nivîskar haya wan ji kovarê tune ne, bi xwe re nabînin li beşa naverokê binihêrin bê kê li ser çi nivîsî ye. Lê wek ku me got ev tiştên hanê tiştên giştî ne û ev problema wan e –dibe ku lênenihêrîna kovarê ne problem be jî, ev jî heye. Em nikarin bi darê zorê bibêjin bixwînin û binivîsin. Xwendevan jî dixwaze roj berî rojekê bibe ‘nivîskar’ bêyî ku qonaxa xwendinê temam bike.”

Edîtorê Kovara W Elîxan Loran di dawiyê de naxwaze ku behsa plan û projeyên nû yên kovarê bike. Dibêje ku ew dixwazin her dem bi awayeke şênber derkevin pêşberî raya giştî. Dû re ji xwendevanên Rûdawê re behsa serpêhatiyeke kovarê dike, “Carekê me kovar bir cem camêrekî di kovarê de wergera helbesteke Murathan Mungan hebû. Camêr bêyî ku li bergê kovarê binihêre bê ka çi tê de heye yan jî tune ye saetekê qala Murathan Mungan kir û got çima hûn helbestên wî wernagerînin kurdî...”

Dûrbîn

Helîm Yûsiv

## Biennale û xemsariya çapemeniya kurdî

Hindik maye deh salên min li Ewrûpayê biqedin. Heta niha herdem bi seyare, otobus û trên û metroyên sererd û binerdê di nav kolanên bajar û welatên cuda re diçim û têm. Cara yekê ye ku bêyî van wesayitên ku navên wan derbasbûn, diçûm û dihatim. Bajarekî wisa ku her ji çend gavan mirov li hember bermayiyeke dîrokî û kevnar şaş dimîne. Yan bi meşê yan jî bi qeyik û gemiyê divabû em herin “Planet.K“ yan jî bi gotineke din planêta Kurdistanê û vegerin otêlê. Ez bawer dikim, yekser bajarê Venezia an Venedig yê Îtalyayî û festîvala wê ya navneteweyî Biennale ku her ji du salan carekê çêdibe, hate bîra hinekan ji we.

Beşdarên vê festîvalê tenê miletên xwedî dewletin. Di temenê xwe yê pêncî û sisiyan de, îsal cara yekê bû ku ji bo Kurdan û bi navê Kurdistanê cihek ji bo pêşkêşkirina çand û hunera kurdî di vê festîvala ku li çar aliyên dinyayê xelk xwe lê digrin, tê veqetandin.

Festîval ji 07'ê hazîranê destpêkiriye û wê heta 22'ê mijdarê dewam bike. Di nav çalakiyên girêdayî “Planet.K“ de du roj ji bo wêjeyê hatibûn terxankirin. Ji nivîskarên Kurd yên hatibûn vexwendin, Arjen Arî, Dilawer Zeraq û ez bûm. Arjen, ji ber pirsgirêkên bîrokratîk nehat.

Venezia wan rojan mîna dinyayeke biçûçik xuyadikir. Ji her miletî, ji her welatî, ji her deverê û ji her zimanî mirov lê dihatin dîtin. Tevger û çûn û hatin hergav û her saet li planeta Kurdistanê hebû. Turîst û gerok dihatin li tabloyên şêwekarên Kurd yên daleqandî temaşe dikirin, wêne dikişandin, li Kurdan û welatê wan dipirsîn û diçûn. Ji bilî dema çalakiyan, ji sibehê heta şeşê êvarê derî vekirî dima, lê ev derfeta “dîrokî“ çawa dihat bikaranîn, ev pirs bibû sedema şewitandina dilê min.

Ji bilî Hêvî Dîlara ya Kurd û hevala wê Orsola Casagrande ya Îtalî û çend ciwanên Kurd “Serhed, Mûrad û Hozan“ ku alîkariyên teknîkî dikirin û hatina Mehmet Yüksel ji bo wergera Îtalî ti piştgirî û guhlêdan û xwedîderketin ji hêla aliyê Kurdan ve nedihat dîtin. Wisa xuyabû ku hejmareke baş tev li vebûnê bibûn û her kesî pişta xwe dabû vê planêta ku bi navê Kurdistanê di dilê dinyayê de hatibû vekirin. Wan rojan Venezia dilê dinyayê bû, Kurdistan jî deriyê xwe ji her kesî re vekiribû.

Roja xwendinê

Pilanê rojê ji du beşan pêkdihat. Beşê yekê ji bo min û D. Zeraq hatibû veqetandin û axaftina li ser wêje û çanda kurdî bû. Beşê diduyan jî ji rojê ku piştî nîvro destpêkir. Ji bo vê rojê nivîskar ji milet û welatên cuda hatibûn vexwendin. Piştî axaftina min a liser hewldanên kuştina ziman û nasnameya kurdî, nivîskarên îtalî Enrico Palandri axivî, wisa jî ji Îtalya nivîskar Roberto Ferucci. Ji Îrlandayê Danny Morison bahsa serpêhatiya miletê xwe ya di derbarê şer û aşitiyê de, kir. Ji Meksîko nivîskar Hermann Bellinghausen bahsa ezmûneya vejîna zimên li Meksîkê kir, wisa jî li ser gelemşeyên ku şerê çekdarî bixwe re tîne. Şeva berî wê, filmekî wî yê dekomenter liser çîrokeke evînî ya gerîllayekî rêxistina Zapatistayê hatibû nîşandan. Ji welatê Baskê jî serokê yekîtiya nivîskarên Baskê Fito Rodriguez amadebû. Axaftineke hestiyar liser ziman û helwesta masiyê mezin ku herdem li benda xwarina masiyê biçûke kir. Ji serî heta dawî, axaftina wî ji rewşa zimanê Baskiyan bêhtir rewşa zimanê Kurdan dianî bîra mirov. Civat di derdora saet şeşê êvarî de bi axaftina Dilawer Zeraq ya liser ziman, sînor û nasnamê qediya.

Ev çalakî û alavên ragihandinê yên Kurdan

Li Ewrûpayê mirov li her kolanekê rastê “rojnamevanekî“ Kurd tê. Bi dehan jî televizyonên Kurdan yên satelît hene, lê ne rojnamevanekî Kurd, ne jî kamîrayeke televizyoneke Kurdan li wan derdoran nehate dîtin. Tenê televizyona îtalî xwedî li çalakiyê derket û bi her nivîskarekî beşdar re reportajeke dirêj çêkir.

Bê guman, nivîskarên Kurd, ne ewqasî hewcedarî amadebûna çalakiyên wisane ku liser wan bê nivîsandin, lê mebesta min jê ew e ku hejmareke mezin ji nivîskarên milet û zimanên cuda li planêta Kurdistanê amade dibin, bahsa xalên hevbeş yên xwe û Kurdan dikin. Bi germayî dibin mêvanê Kurdan û tev li çalakiyên wan dibin, lê kesek ji çapemeniya Kurd ne xwedî li vê helwesta wanî dostane derdikeve, ne jî guh dide wan û nêzîkayiyên wan. Ev helwesta ecêb jî yek ji gelek helwestên Kurdan û çapemeniya wan e ku ez nikarim di sedemên wê de baş têbigihêjim.

# Helbesta kurdî di kovara fransî de

**Rûdaw (Parîs)** - Kovara demsalî ya helbestî ya bi navê Action Poétique bi dosyayeke taybet a bi hejmara xwe ya 197'an de ya Îlona 2009'an cih da helbesta kurdî. Action Poétique ji sala 1951'an virve li Fransayê tê belavkirin û bi vî awayî di cîhana helbesta welatên fransîaxêv de yek ji kovarên herî serkeftî ye.

Edîtorê kovarê Henri Deluy bi xwe piştî xebateke deh rojan li Hewlêr û Silêmaniyê, bi hevkariya Amr Ahmed, Ferhad Pîrbal û Justin Landau vê dosyaya ku ji berhemên deh helbestvanên Kurd ên ji başûrê Kurdistanê pêk tê amade kiriye. Helbestvanên ku di dosyayê de navên wan cihgirtine ev in: Zana Xelîl, Terze Caf, Bêhzad Kurdistanî, Nezend Begîxanî, Kejal Ehmed, Ferhad Pîrbal, Ehmed Mela, Celal Berzincî, Refîq Sabir û Şêrko Bêkes.

“Kurd, erê, ez hinek tiştan dizanim derbarê Kurdan de : ev Iranî ne, nexêr ne Îranî ne, ev Tirk in, nexêr ne Tirk in, ew Ereb in, nexêr ew ne Ereb in... ev Kurd in. Parçebûna axa Kurdistanê jî nikare vê rastiyê biguhere: Kurd hene. Ji mêj ve ye vê yekê didin qebûlkirin, carinan bi darê zora çekên di destên xwe de...

Wiha dest bi dabaşa xwe dike Henri Deluy di destpêka dosyayê de. Deluy par di meha Mijdarê de dibe mêvanê Festîvala Gelawêj a ronakbîrî li Silêmaniyê. Ev dosyaya helbesta kurdî berhema wê gera wî ye. Henry Deluy, ku bi xwe jî helbestvanekî naskirî ye, di destêpêka dosyayê de çavdêrî û hestên xwe yên li Kurdistanê derdibire û vê dosyayê gelek girîng dibîne, bi gotinên wî “ ev helbestên ku cara yekem e bi fransî têne belavkirin derfetek in ji bo xwendineke derveyî ewrûpa-navend, dûr ji referansên me yên kulturî û ji bo guhdana nivîs û lêgerînên din,— heta divê mirov bibêje ji bo guhdana dinyayeke din.”

**Berhemdariya edebî ya kurdî ji her gavekê zindîtir e**

Piştî pêşekiya Henri Deluy, Amr Ahmedê akademîsyenê Kurd û bisporê helbesta nûjen a kurdî û farisî, bi kurtegotareke li ser zimanên kurdî, çarçoveya siyaseta zimanî û nîqaşên li ser zimanê standard ê kurdî dirêjî dide dosyayê. Di dawiya dosyayê de jî dîsa Amr Ahmed bi kurtegotarekê pêşî helbesta klasîk a bi sê zaravayan, goranî, kurmancî û soranî dide nasîn û paşî nîqaşeke giştî dike li ser edebîn nûjen ê Kurd. Amr di gotara xwe de destnîşan dike ku navbera sedsala 20'an de pêlên nûjenkariyê, ku li Ewrûpayê dest pê kiribûn, bi rêya edebê tirkî gihiştine edebê kurdî. Feramerz, Nûrî Şêx Salih, Qedrîcan û Ebdulla Goran ji wan edîbên nûjenkar in. Lê belê, bi ya Amr, projeya nûjenkariya helbesta kurdî bi destê Ebdulla Goran hatiye temamkirin. Goran di vê çarçoveyê de kêşa kîteyî bi cih dike di helbestê de û doza zimanekî nûjen ê helbestê dike. Herwiha Goran xwe ji zimanekî pir berz û bi peyvên erebî dagirtî diparêze û zimanê kurdî yê zindî di helbesta xwe de vedijîne. Amr piştî behseke li ser diyarbûna yekem mînakên pexşanî yên kurdî digihe wê qenaetê ku îro berhemdariya edebî ya kurdî ji her gavekê zindîtir e.

Di dawiya dosyayê de, nivîskar Beyar Mistefa Sêvdîn dîroka Kurdistanê heta digihe serdema nûjen bi awayekî pir sentetîk pêşkêşî xwînerên Fransayî dike û ew jî, bi rexê xwe ve, di dawiya gotara xwe de diyar dike ku em di kîjan alîde lê binêrin jî pirsa kurdî hêj jî wekî kêşeyeke zindî li ber me ye.

**Kifteyên kurdî di ber helbestên fransî re**

Sûprîzeke din a kovarê bo xwarinên ji terîfa çar cûre kifteyên kurdî ye. Tarîfên van her çar xwarinên kiftan ji Duhokê, ji Esma Ehmed Îsaya dayika hevkarê dosyayê Amr Ahmed tên. Diyar e amadekarên dosyayê xwestine ji bilî xweşkirina rewşa rûhî ya xwîneran bi helbestên ji hev delaltir tama devê wan jî xweş bikin bi pesnê metbexa kurdî.

Action Poétique

197 Action Poétique Kurdes

# Girava jinan




*Endamen Utamarayê di bexceyê avahiyê de di dema animasyona axaftinê de xûya dikin...*

**Köln (Rûdaw)** - Bi armanca ku jin werin cem hev û pirsgirêkên xwe bi xwe çareser bikin, bi alikariya hev, xwe ji wan travmayên ku derbas kirine, rihet bibin ev sazî hatiye avakirin: UTAMARA. Naveroka navê saziyê jî gelek balkêş e... Çi Alman, çi Kurd, çi ji neteweyên din 130 endamên UTAMARA hene. Karkereke ji vê saziyê Meike Nack ji Rûdawê re dibêje ku jineke carekî were cem wan, careke din dîsa tê: "Jiber ku em jin li vir hurmeta hev digirin. Jin li vir rihet in û herdem dixwazin dîsa werin cem me." UTAMARA endamê masaya gulover e ku li hemberî şîddetê têdikoşe. Nack dibêje ku çareserkirina pirsgirêkên ji ber şîddetê, herdem yek e: "Lê gelek caran, tenê axaftin ji wan re bes e û wan rihet dike. Tiştê ku me baş fahmkiriye ew e ku jin bi xwe ji her kesî çêtir dizane çi jê re baş e."

Meike Nack pirsên Rûdawê wiha bersivand.

***UTAMARA çi dike? Armanca wê çi ye û kengê ava bûyê? Wateya navê Utamara çi ye?***

Navenda Jivana Jinê UTAMARA di sala 2006'an de jinan ji bo jinan ava kiriye. Armanca me di her alî de pêşxistina jinan e. Wan di hêla etnîsîte, çand û nasnameyên civakî yên cûda de xurt bikin, tecrube û zanînên xwe parve bikin. Navê UTAMARA ji navên du jinên leheng, Uta û Amara pêk tê. Her du jî aktîvistên jinan û înternasyonalist bûn. Uta û Amara di pilanên avakirina navendeke jinan de cîh girtibûn. Uta Alman bû û Amara jî Tirk bû. Her du di qezayeke trafîkê de jiyana xwe ji dest dan û ji bo bîranîna wan, herwiha karên ku me bi hev re dest pe kiribû, bidome, me navê wan li saziyê kiriye.

***Hûn karên xwe çawa dikin, ango bi endamên profesyonel an bi dil? Sistema kar û xebatên we heye an na? Çend kes li saziyê kar dikin?***

130 endamên me hene. Her endameke me herwiha karkera navendê ye. Em giştî dikarin bêjin, deriyê me bi dil ji her jinan re vekiriye û em her jinan cidî digirin. Ev jî çavkaniya motivasyona karê me ye. Her jinek ku tê vir bi xwe re serpêhatiyen xwe jî tîne. Ji bo me tişta herî girîng ew e ku em jin li Navendê hurmeta hev digirin. Ji ber wiha jin li vir rihet in û her dixwazin dîsa werin cem me. Her jina ku bi me re li vê derê kar dike, li gor wext û delfetên xwe dike.

***Wek em dizanin Utamara li ser jinên Kurd xebatan dimeşîne. Gelo li Almanya jinên Kurd bêhtir xwediyê pirsgirêken çawa nin? Hûn bi çi awayî alîkariya wan dikin?***

Li cîhanê, her jin ji ber ku pir zoriyê ji gelek hêlan dikişînin, bi fêm û tiştê fêr bûne nikarin zêde cîhê xwe aktif di pêşketina çand û civakê de bigirin. Ew zoriya ku ew dikişînin bandora xwe dide ser tendurustî û têkiliyên wan ên sosyal. Pir zêde di derbarê biryarên wan ê civakî, siyasî û şexsî de tê dîtin.

Di jiyana jinan de ew pir tenêbûn, sarbûna civakê - ku mirov di civakê de pirsa hevdu nake- nas dikin. Pirsgirêkên jinên penaber gelek in: bi piranî zimanê welatê ji wan re xerîb e nizanin, civaka ku tê de dijîn baş nas nakin; sîstema tendûristiyê nasnakin, nizanin ku çi mafên wan hene...

***Pirsgirêkên jinan bêtir ji ku tên?***

Sedemê sereke şer e. Şerê ku li hemberî Kurdan tê meşandin, pir alî ye û li dijî hemû civaka Kurd e. Lê zoriya ku jin ji şer dikişîne dijwartir e. Sedemê şîddeta di hundirê malbatê de û derbaskirina travma jî ji ber şer e û windakirina derdore wan, welatê wan e. Gelek mêr li xerîbiyê bê kar in û ji ber wiha xwe bê qîmet dibînin û şîddete li hemberî jinan dimeşînin. Ev in zorî û pirsgirêkên ku jin li çareserkirina wan digerin. Em bi perwerdeyê, bi axaftinê û bi karên gruban (kollektif) li çareserkirina wan pirsgirêkan bi hev re digerîn û dibînin. Armanca ku me UTAMARA ava kiriye ew bû, ku em cîhekî avabikin, ku jin û bi taybetî jinên Kurd, xwe ji wan travmayên ku derbas kirine, rihet bikin û bi hevre bên tedawî kirin.

***Tekiliyên we bi partî û saziyên Kurd re çawa ye? Ji bilî we wekî din çi sazî hene ku li ser pirsgirêkên jinan kar dikin?***

Têkiliyên me bi saziyan re herdem girêdayî proje û karê me ne. Em bi ti partiyan re kar nakin. Lê belê em bi pir saziyên jinan re kar dikin û karê me herdem li ser çareserkirina pirsgirêkên jinan re ye. Gerek daxwaziya wan saziyan jî wek ya me be.

***Lê sazî... Bi saziyan re têkiliyên we tune? Hûn bi saziyên jinan ên navnetewî û yên li Kurdistanê tu kar û xebatan dikin?***

Ji ber ku em li gelek milan de karê xwe dimeşînin, em bi gelek saziyan re kar dikin. Wek ku em endamê masaya gurover li hemberî şîddetê ne, bi Europäische Feministische Initiative, Migrantinnenselbstorganisationen, Paritätischer Wohlfahrtsverband, Gleichstellungsbeauftragten, rojnamêyen jinan re kar dikin.

***Jin bêhtîr ji ber çi serî li we didin? Dema jineke ku di bin xetarê de be û serî li we bide, hûn çawa parastin û alikariya wê dikin?***

Bi piranî jin têne cem me, ji ber ku bi karê me hesiyane, ji karê me hezdikin û dixwazin bêhtir nas bikin. Ji ber ku bala wan dikişîne. Yan jî hevaleke an naseke xwe bi xwe re tînin. Dema jin alîkariyê ji me dixwaze, ji ber ku pirsgirêk heye, em di serî de dipirsin, alîkariyeke bi çi rengî dixwaze. Çareserkirina pirsgirêkên ji ber şîddet, herdem yek e. Lê gelek caran, tenê axaftin ji wan re bes e û wan rihet dike. Tiştê ku me baş fahmkiriye ew e ku jin bi xwe ji her kesî çêtir dizane çi jê re baş e.

***Dema hûn pirsgirêkên jina Kurd li Almanya û jina Alman bi hev re muqayesebikin , çi cûdahî di navbera pirsgirêkan de hene? Mînak tenê jinên Kurd ji bo "namûsê" tên kuştin?***

Jinên Alman ji ber hesûdiyê tên kuştin. Ji bo me ev û kuştina ji bo "namûsê" wek hev in. Jin di nav civakê de bindestiyeke wisa derbas dikin, ku jiyana xwe li gor merê xwe, malbata xwe û civakê bijîn. Gelek jinên ku wê bindestiye qebûl nakin, biryara jiyan xwe ya ji destdanê didin û naxwazin jiyaneke di qefesekê de bijîn. Em dikarin bêjin, nayê gebûlkirin ku jin azad û li gor fikrê xwe bijî. Em dibînin ku jin internasyonal li hemberî pirsgirêkên wek hev derdikevin û em vê yekê wek îmkanekî dibînin.

***Hûn kar û projeyên xwe çawa bi raya giştî re parve dikin?***

Em herdem karê çapemeniyê dikin. Em belavoka belav dikin, tevlî civînan dibin û yek bi yek bi mirovan re diaxifin. Projeyên ku ji bo çapameniyê girîng bin em wan çap dikin û diweşînin. Li ser mijarê me lêkolîna "Encamên Psîkolojîk ên Serboriyên Travmayê li ser Pêşketina Jinên Kurd ên Penaber li Yekîtiya Ewrûpayê" wergerand zimanê almanî û weşand. Ji bo em xwe bigihînin lekolinvanan, saziyan û mirovên ku me dixwest bala xwe bidin ser rewşa jinên Kurd li Ewrûpayê. Di projeya me "Breaking the Cycle of Violence" de em dixwazin dos-ya perwerdê ji bo karê parastina li hemberî şîddet çapbikin û biweşînin.



# "Studieförbundet Vuxenskolan" emaneta Bêrîvanê ye

**Göteborg (Rûdaw)** - Rêxistina "Studieförbundet Vuxenskolan" di sala 1967'an de hatiye damezirandin û derfetê dide kesên ku dixwaze bixwîne û di gelek warên jiyanê de bi pêş bixîne. Dawiya hefteya borî li bajarê Göteborgê kongra Studieförbundet Vuxenskolan li dar ket û jina Kurd Bêrîvan Mihemed ji bo komîta rêvebir hat hilbijartin.

Bêrîvan Mihemed endameke Partiya Gel a Swêdî ye û endama encumena şaredariya bajarê Sundesvall e. Partiya Gel û Centerpartiet du partiyên mezin ên li Swêdê ne. Studieförbundet Vuxenskolan ji aliyê van herdu partiyan û herwiha komek ji rêxistinên Swêdî yên lîberal û rastgir ve tê birêvebirin. Ji ber çalakbûna wê Bêrîvana 26 salî ji aliyê partiya xwe ve ji bo komîteya birêvebir a Studieförbundet Vuxenskolan layiq hate dîtin. Ew tek endama bi esil ne Swêdî ye ku di vê komîteya giring de cî digire.

Piştî hilbijartina wê roja şemiya borî Bêrîvan Mihemed, ku bi eslê xwe ji Rojavayê Kurdistanê ye û ji biçûkaniya xwe ve li Swêdê dijî. Bêrîvanê ji Rûdawê re eşkere kir ku ewê di du salên bê de li ser wê yekê bixebite ku berê xwe bide Kurdistanê û li wê derê çend programên Studieförbundet Vuxenskolan pêk bîne: "Rêxistina me xwedî derfetên mezin e û yek ji armancên wê ew e ku piştgiriya xebatên li derveyî Swêdê bike. Ji ber ku ez Kurd im, ezê li ser bixebitim ku ji bo pêşxistina xwendin û perwerdeya mirovên li Kurdistanê çend karan bikim."

Ji bilî xebata xwe ya siyasî Bêrîvan Mihemed herwiha rojnamevan e. Wê xwendina rojnamevaniyê kiriye û ji medyaya Swêdî re dinivîsîne. Ew herwiha di şirketekê de dixebite ku karan ji bo xwendekaran peyda dike. Ji ber zîrekbûna wê di karê wê de şirketa wê ew kiriye birêvebira xebatê li ser herêmeke bakurê Swêdê.

# Jinên Ranye li stargehekî digerin

**Ferman Çomanî**

**Ranya (Rûdaw)** – Bi sedema nebûna navendeke vehewîna jinan li Ranye û Pişder, jinên di bin tehdîdê de li malan tên veşartin yan xwe vedişêrin. Berpirsên navçeyê jî daxwaz dikin ku navendeke vehewandina jinan bê çêkirin.



Deverên Ranye û Pişder yek ji wan navçeyên ku heta niha jî ji destê dehan diyarde û bûyerên civakî dinalîne û niha jî tundûtujiyeke zêde jî li hemberî jinan heye. Herçiqas nivîsîngeha Tundûtujiya Dijî Jinan heye, lê navenda vehewînê tune bo wan jinên rûbirûyê tehdîdê dibin yan tên tehdîd kirin.

Di vê derbarê de Rêveberê Nivîsîngeha Tundûtujiya Dijî Jinan li Ranya Komiser Hesen Xoşnaw dibêje; "Yek ji pirsgirêkên mezin ên nivîsîngeha me nebûna navendeke vehewîna jinan e. Herwiha heta niha me nêzîka 10 kesan şandine navendên vehewîna jinan li cihên din û ji mirinê rizgar kirine."

Hesen Xoşnaw amaje bi wê yekê da ku gelek caran nîvê şevê dosye ji wan re tên, ji ber nebûna navendan li malên xwe vedişêrin û got: "Li gor yasayan ew ne tawanbar in û em nikarin wan li girtîgehê deynin, loma em wan li malên xwe vedişêrin, ev jî di warê yasayî û civakî de giran e heta wan dighin cihê xwe."

Li gor Komisêr Hesen, hinek rewş hene nabe ji sînor bên dûrxistin, jiber dema jinek ji sînorê me dûr dikeve wergirtina wê karekî giran e, herwiha hinek pirsgirêk hene piştî li ser axaftin tê kirin di hundirê 48 demjimêran de dibe bê çareser kirin, lê ger bo navendeke Silêmaniyê bê şandin heta mirov tîne dibe ku 10 roj pê here, dibe ku dûbare malabata wê wernegre.

Berevajiya Hesen Xoşnaw ku daxwaz dike navendeke vehewîna jinan bê çêkirin, Qeymeqamê Qeza Ranye Elî Hemed Beg, ne li gel fikra navendeke wiha ye û dibêje: "Ez ne ligel penageha jina me, divê dezgahên hikûmetê, rêxirawên civaka sivîl û saziyên mafê mirov hewl bidin jiyaneke hevdem di navbera jin û mêr de dirust bikin. Em dixwazin navendên rewşenbîrî, pêşvebirina jinan, hevserîtî û gencan zêde bikin, da civakeke asûde û tendirust çêbibe."

Qeymeqamê Qeza Ranye ragehand ku girtîxaneyeke hevdem tê çêkirin, beşê jinan jî tê de heye û ew jinên rûbirûyê tundûtujiyê dibin divê di wê girtîgehê de bên bicîhkirin. Nabe her keçek ji mal aciz bû bazde wan navendan, divê pirsgirêk bi rêya yasayan bê çareser kirin.

Aliyên din jî mînak lêkolerên civakî vebûna navendên vehewînê wek çareser nabînin. Çalakvana warê jinan û lêkolera civakî Rêzan Ehmed jî di vê derbarê de wiha diaxife: "Zêde girîng nabînim li vê navçeyê navendek hebe bo vehewîna wan jinên rûbirîyê pirsgirêkên civakî dibin, bi awayekî bibe xan û hêlîna wan jinan û êdî venegerin nav malbata xwe, lê dibe navendek hebe wan jinan li xwe bigre ku hîç penageheke wan tune."

Rêzan Ehmed axaftina xwe wiha qedand: "Divê navend û aliyên peywendîdar bi girîngî berê xwe bidin van rewşên wiha û pirsgirêkên wan jinan çareser bikin ku rûbirûyê tundûtujiyê dibin, bibin navendek bikaribin wan vegerînin nav malbata wan, ne ku li navendekê vehewînin û pirsgirêka wê daleqandî bimîne."

